Bidestveanîna Mafên Netewî Yên Gelê Kurd Di Çarçoveya Îranek Demokratîk û Federalî De

Hejmar: 158
5'ê Gulan a 2011
Buha: 150 Tûmen

# Agirî

## Birêz Mistefa Hicrî ji konferansa KNC'ê re peyamek şand

R:2

Duheftînameyek siyasî, civakî, çandî û hunerî ye ku Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê diweşîne www.kurdistanmedia.com/kurdi



## ji nesaxên hejar ên Îranê re na, lê ji bo xelkê Kerbelayê erê!!!

**Di Îranê de cî ji bo nexweşên desteng tuneye, lê ji dahata neteweyî ya vî xelkê belengaz bo xelkê Kerbelayê nexweşxane tê avakirin**

Li gorî nûçeya malpera hikûmetî ya Mêhr, berpirsyareke rejîma Îranê bi navê Hesen Pilark ragehandiye ku ew dixwazin li Kerbelayê nexweşxaneyeke 120 textî ava bikin ku 14 hezar metir jêrxana wê ye û ji şeş qatan pêk tê.

Li gorî gotina navbirî heya niha 17 milyard tûmen bûye xercê vê nexweşxaneyê, û 13 milyard tûmenê din jî bo bidavîanîna vê pirojeyê hewce ye. Avakirina nexweşxaneyên bi vî awayî di demekê de ye ku xelkê hejar û desteng ê Îranê seba vê ku nikarin xercê nexweşiya xwe bidin li nexweşxaneyan tên derkirin û li çolistanan tên avêtin.

# Çavnihêriya deh salî bi dawî hat

# Lê şerê dijî terorê berdewam e




**Osame Bin Laden, berpirsyarê yekemîn yê "Elqaîde" bi destê hêzên Amerîkayî hate kuştin**

**Barak Obama, serkomarê Amerîkayê di axavtineke televîzyonî de ragehand ku Bin Laden yek ji terorîstên herî naskirî ê cîhanê roja 1'ê May ji aliyê hêzên Amerîkayî ve li Pakistanê hate kuştin**

**Obama derbarê kuştina Bin Laden de ragehand ku yekemîn zanyarî derbarê cihê xwe veşartina Bin Laden di meha August ya sala 2010'an de gihîştine destê wî. Lê di van çend hefteyên dawî de zanyariyên zêdetir gihîştin destê wî, û wî jî biryara êrîşa bi dijî wî der kir.**

**Obama ragehand ku bi kuştina Bin Laden,** şerê dijberî terorê bi dawî nahê.

Piştî kuştina Bin Laden, Buş û Bîl Kilînton, serkomarên pêşîn ên Amerîkayê pîrozbahî ji Obama kirin. Buş ku di dema êrîşa 11'ê Septemberê serkomarê DYA'ê bû, kuştina Bin Laden wek deskevtek girîng û rêvebirina edaletê nav bir, û ragehand ku şerê dijberî terorê wê bidome.

Osame Bin Laden sala 1957'an li Erebistanê ji dayîk bibû, û piştî derketina hêzên Yekîtiya Soviyeta pêşîn grupek bi navê "Elqaîde" ava kir, ku di van çend salên borî de berpirsayetiya kiryarên wek bombedanîna 7'ê Augusta sala 1998 li balyozxaneyên Amerîkayê li Tanzanya û Kênya'yê de, û êrîşa bo ser gemiya şerî ya bi navê" U.S.S. KUL" û êrîşa 11'ê Septembera sala 2001'an bo ser Navenda Tîcareta Cîhanî û Pentagonê kêşa stûyê xwe.




## Sekreterê Giştî yê PDK Îranê li hevpeyvîna bi malpera "Elerebiye" re

## Ger Komara Îslamî bixwaze mafên netewan dabîn bike, tu kes dest bo çekê nabe

R: 3



### Serkuta Erebên Ehwazê, cehdek ji bo tirsandina gelên Îranê

Dara Natiq

Îran welatekî pir netewî ye û her yek ji netewên pêkhênere vî welatî anku gelên Kurd, Fars, Turkmen, Azerî, Belûç û Ereb bi ... R:5




### Guhertina hikûmeta Îranê; ewlewiyeta DYA li Rojhilata ...

W: Arîn

Çak Firlîş, rayedarê payebilind li Zanîngeha Harward Kinêdî li rojnameya Kirîstîşin Sayns Manîtor de babetek li jêr navê... R: 7



### Her ku diçe rewşa kedkaran dijwartir dibe

Azad Kurdî

Civata Mafê Mirovan a Saziya Neteweyên Yekbûyî li bajarê Jinêv'ê di roja pêncşemî, 31'ê Adarê... R: 9



### Pêkanîna zimanê standard erkê kê/î ye

Ceifer Mubeşirniya

Zimanê kurdî yek ji zimanên herî kevinar ên cîhanê tê hejmar, lê heya niha jî ev ziman bi çendîn .... R: 11

www.arsivakurd.org

# Peyama birêz Mistefa Hicrî bo konferansa KNC

**Endamên birêz ên Kongireya Netewî a Kurd li Amerîkaya Bakûr!**
**Serokê Birêz!**
**Mêvanên hêja!**

Bi boneya birêveçûna konferansa salane a Kongireya Netewî a Kurd li Amerîkaya Bakûr, rêz û hurmetên bêdawî ji we re dişînim û konferanek serkevtî û bikêr ji we re hêvî dixwazim. Herweha sipasiya we dikim ji bo gazîkirina min bo beşdarîkirin di konferansê de. Amadebûn di nava bazneya dost û hevalan di pêvajoya konferansê de, cihê şanaziyê ye, lê pirograma kar û xebatê ew derfet neda.




Hêvîdar im konferansa we ya pêşerojê di seranserê Kurdistana azad kir ji dagîrker û tepeserkaran birêve biçe.

Di dawiyê de, hêvîdar im konferansa we destkevtên piraktîk bo netewa me bi dîv de be.

Tevî rêz û hurmet

**Mistefa Hicrî**
**Sekreterê Giştî yê PDKÎ**
**29'ê Nîsana 2011**
**9'ê Banemera 1390**

## Sergotar

# Edalet bi ser dikewe

**Selîm Zencîrî**

Îslamgirayê radîkal, sembola îdeolojîkî, hêmaya cîhadê, mîlyarderê terorîst, avaker û pilandarêjê El- Qaîdeyê Osame Bin Ladên, çend rojan berî niha (1'ê Gulanê) ji aliyê hêzên komando ên Amerîkayî ve li êwirgeha xwe li Pakistanê de hat kuştin û dawî bi jiyana tejî cînayet û zulm û zorî a wî hat anîn. Osameyê serkirdeyê terorîstan ku bibû kabûsek mezin bo azadîxwazan li cîhanê de, piştî 10 salan şopandina berfireh û lêgerînê, serbarê diyarî kirina 25 milyon dolaran weke xelat bo nîşandana cihê wî, aqibet giha cezayê xwe û bû bi îbret û şîretek ji bo cînayetkarên din.

Kuştina Osame serbarê wê ku bûye rojeva medya û ragihandinan, herweha reaksiyon û helwestên cur bi cur ên navnetewî jî li pey xwe re anî û bi pêşwaziyek berfireh a mirovdostan re ber bi rû bû. Ev bûyer weke serketina ronahî û mirovdostiyê bi ser tarîtî û nezaniyê re ye, herweha serketina demokrasiyê ye bi ser bereya terorê ku piştî bûyera 11'ê septambera 2001'an ve heya niha cîhan kiriye du beş; anku bereya teror û ya dijî terorê, û dawî bi vê raman û baweriyê anî ku piştî hiloşîna Yekêtiya Soviyet û komonîzmê, êdî cîhana du cemserî nemaye!! Lê bi derketina fendemintalîzma îslamî û terorê ku desketên civakên demokratîk û pêşketî bi armanc digire, ew bawerî û hêvî jî betal û nema.

Lewma piştî bûyera 11'ê Septamberê bereya teror û mîhwera şerotiyê ji aliyê Serkomarê wê demê yê Amerîkayê ve hat diyarkirin, ku xincî Elqaîdeyê, navê Îran, Efxanistan û Îraqê jî têde dixuya. Li encama şerê dijî terorê de her du hikûmetên Talîban û Rejîma Beis a Îraqê hatin hiloşandin, lê dergoş û maka eslî a terorê ku carê her li ser perwerdekirin û piştewaniya terorê berdewam e û heneka bi ridîna civaka cîhanî dike, her li ser kar e û niha jî beşek zaf ji endamên Elqaîdeyê li nav xaka xwe de cih dane û wan li gor berjewendiyên xwe bikar tîne.

Herweha helwest û reaksiyona xembarî û bi parêz a rayedarên hikûmeta Îranê li hember nûçeya kûştina Osame de eyankerê vê rastiyê ye ku zehniyet û fikriyeta paremayî û terorperwerî a wan, rê nade ku kuştina terorîstan ji canê wan xweş bê û bi xwe jî beşek ji vê piroseyê ne û pêşîneyek dûr û karnameyek tejî cînayet û terora neyar û azadîxwazên Îranî û gelên din de hene û heta Komara Îslamî û tarîperestên Cemaranê mabin, cîhan ewlehî û aramiyê bi xwe nabîne û gefa ser deskevtên demokratîk û demokrasiyê jî dê her berdewam be. Lewma her çend ku kuştina Bin Ladên, gavek dîrokî, deskevtek mezin ji bo dewleta Amerîka, serketinek ji bo eniya dijî terorê û mizgîniyek ji bo gelên azadîxwaz û demokrasîxwaz ên cîhanê ye, di heman demê de peyam û hişdarek e bi cînayetkar û terorperwerên din, lê mirina wî jî wateya dawiya terorîzmê nine, belkî alîkariyê bi hewildan û xebata dijî terorê dike û li rastî de eva ku dikare pêşiya teror û tundajoyên mesebî û bîrtesk bi taybetî li Îranê de bigre û wan şikest bide, guhertinên li deverê û piştgiriya bizavên demokrasîxwaziya xelkê ye û wê demê ye ku bi rastî edalet biser dikewe.

# Li ser binpêkirina mafê mirov li Sûriyê, Şêvra Mafê Mirov a NY civiya

Civînek taybet a Şêvra Mafê Mirov a saziya NY li Jinêvê li ser binpêkirina mafê mirov li Sûriyê roja 29'ê Nîsanê, li ser daxwaza welatê Amerîkayê bi beşdariya Komeleya Mafê Mirov a Kurdistana Îranê-Jinêv destpêkir.

Hevdem li gel destpêkirina civînê nûnerê Amerîkayê li UN ê, pirojeya biyraynameyekê pêşkêş kir û daxwaz ji Şêvra Mafê Mirov kir ku bi şandina komîsyonekê navnetewî a UN ê binpêkirinên mafê mirov li Sûriyê û dabînkirina raporek bo 17'mîn civîna Şêvra Mafê Mirov ku li 30'ê meha 5 de destpê dike, vekolîn û amadekariyê bike.

Despêka civînê bi gotara Cihgirê Serok Şêvra Mafê Mirov li ser bûyerên niha ên Sûriyê wate kuştina pêtir ji 450 xwenîşanderan ji aliyê Ertêşa Sûriyê ve û dorpêçkirina çendîn bajar, herweha bersiva daxwazên xelkê bo azadî û demokrasiyê bi çek, destpê kir. Navbirî di gotara xwe de bi tundî hikûmeta Sûriyê mehkûm kir û hikûmeta han bi berpirsê wan bûyeran zanî û daxwaz ji wê hikûmetê kir ku carnameya mafê mirov û ev konvansiyona ku wajo kirî, pêrew bike.

Piştre nûnerê Sûriyê hat gazîkirin û gotarek li ser bûyerên welatê xwe pêşkêş kir û navbirî bi tundî dijî destêwerdanên welatên rojava di kar û barên Sûriyê de axivî û got: Ewên ku li Sûriyê xwenîşandanan dikin, ser bi girûpa Sedefî ne û dixwazin îmaretek Sedefî li Sûriyê ava bikin.

Navbirî pêrewiya welatê xwe bi carnameya Mafê Mirov dupat kir û ev yek piştrast kir ku welatê wî reform destpê kiriye û yasaya hikûmetnîzamî ji holê rakiriye û dirêjî bi reformê dide. Bi wan gotinan nûnerê Sûriyê hewl da ku bîr û raya giştiye beşdarbûyan berxwar de bibe.

Piştre gera her yek ji girûp û welatan hat. Nûnerê Hengarya weke nûnerê girûpa Yekîtiya Ewropayê tun û tûjiyên hêzên ewlehî ên hikûmeta Sûriyê mehkûm kir û daxwaz kir ku hikûmeta Sûriyê zûtirîn dem wan tun û tûjiyan bisekinîne û di demek diyarîkirî de reformek micid destpê bike.

Herweha nûnerê Ewropa piştevaniya Eniya Ewropayuê ji bo mehkûmkirina Sûriyê û şandina heyetek vekolînê a navnetewî û xweser a saziya NY bo vekolîna bûyeran.

Piştre her yek ji girûpên welatên Erebî û saziya konfiransa Îslamî dijî vê pirojeyê rawestan û bi destêwerdan di kar û barên navxwe ên welatê Sûriyê dan zanîn.

Nûnerê girûpa Afrîqayê daxwaz ji hikûmeta Sûriyê kir ku rêz ji mafê xwenîşanderan bigre û siyaseta tun û tûjiyê nehêle.

Di dirêjiya civînê de çendîn welat weke: Firansa, Birîtanya, Îspanya, Portigal, Nurwêj û Swîsê ragihandin ku hikûmeta Sûriyê dibe dev ji siyaseta tepeserkariyê berde û wan welatan piştevaniya biryarnameya Amerîkayê kirin.

Berevajî, hin welat weke Kureya Bakûr, Rûsiya û Çîn dijî pirojeya Amerîkayê bo mehkûmkirina Sûriyê sekinîn.

Nûnerê Amerîkayê ragihand ku civîna han dibe peyamekê bide xelkê Sûriyê ku em bi wan re ne û kuştina xelkê Sûriyê bi destê Artêşa hikûmetê napejirîne, herweha navbirî nerazîtiya welatê xwe li hember bûna Sûriyê bi endamê Şêvra Mafê Mirov nîşan da ku welatê Sûriyê dixwaze di civîna çend mehên pêş de a Şêvra Mafê Mirov, bibe endamê vê saziyê.

Cihê amajepêkirinê ye ku Şêvra Mafê Mirov zaf bi kêmî civînên neasayî pêk tîne. Vê şêvrê di 25.02.2011'an de jî li ser pirsa welatê Lîbiyê civiya bû û di encam de hikûmeta Lîbî hatibû mehkûmkirin.

Hêjayî gotinê ye ku pirojeya biryarnameya Amerîkayê bi pirraniya dengan hat pesendkirin.

**Komeleya Mafê Mirov a Kurdistana Îranê- Jinêv**




www.arsivakurd.org

# Hevpeyvîna "Elerebiye" li gel Sekreterê Giştî yê PDK Îranê

## Ger Komara Îslamî bixwaze mafên netewan dabîn bike, tu kes dest bo çekê nabe




Di demekê de ku parêzgarê Kurdistanê "girûpek tundajo a mesebî" bi desthebûn di pevçûna çekdarane a wan dawiyane li nêzîk bajarê Sinê de tawanbar dike, Mistefa Hicrî, Sekreterê Giştî ê PDK Îranê tekezê liser vê yekê dike ku ev piropagende bi mebesta berxwarkirina hizr û raya giştî tê encamdan.

Mistefa Hicrî, roja Şemî, 23.4.2011'an di hevpeyvînekê li gel Elerebiye de piştrast kir: "Her car siyaseta rejîma li ser vê yekê bûye ku rabigihîne birêveberên pevçûnê hatine kuştin yan destbiser bûne heya ku îdeyên xwe bo zalbûn bi ser vê rewşê de biselmîne, lê ew şîweya deiyan pirraniya caran li ser bingehek rastîn nesekiniye. Çavkaniyên ewlehî li Îranê ragihandin, roja derbasbûyî li gundê Hesenava li nêzîk bajarê Sinê di navbera girûpek çekdar û hêza întizamî de heya demjimêrên dawî ên şevê, pevçûn çê bûye û çend kes ji hêzên Polîs birîndar bûn û hejmarek ji çekdaran jî hatin kuştin û destbiserkirin, lê amarek dirust ji kuştiyan ranegihandine.

Sekreterê Giştî ê Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê got: "Navê kuştiyan di pevçûnan de û cihê destbiserkirinan tu car nahê ragihandin, lê hin caran kesên bêtawan dikin gorî û bi tometa beşdarî di pevçûnan de ceza dikin. Cihgirê berpirsê kar û barên siyasî û ewlehî yê parêzgeha Kurdistanê li dor pevçûnên vê dawiyê di konferansekê rojnamevanî de ragihand, girûpekê terorîstî-mesebî ku xwe bi "Cemaeta Tohîd û Cehad" nasandiye kiryarek çekdarane li dijî hêzên Polîs encam dane.

Îrec Hesenzade tekez kir ku dezgehên ewlehiyê şeva berî sefera heyeta dewletê bo parêzgehê, du kesên ser bi wê girûpê ku hin çek û bombeyên dengî bi wan re bûne destnîşan û destbiser kirine. Bi gotina wî wan kesan dixwastin di dema sefera heyeta dewletê de bo cihên pirr hat û çû wan bombeyan biteqînin.

Lê Mistefa Hicrî piştrast kir ku di Kurdistanê de girûpek çekdar bi navê "Cemaeta Tohîd û Cehad" tune ye û pirraniya saziyên Îslamgera di wê deverê de li jêr konterola rejîmê de ne û hin ji wan jî ser bi dewletê ne.

**Sitema Netewî**

Sekreterê Giştî ê PDK Îranê got: "Di demek ku kêmtirîn çalakiya kes û hizbên pênasexwaz tên serkutkirin saziyên bi wî awayî bi awayekê serbest çalakiyan dikin û bo xelkê me jî naskirî ne".

Hicrî sedema pevçûnên bi vî awayî li Kurdistanê bi sitema netewî û li berçavnegirtina mafê neteweyan binav kir.

Navbirî ew pevçûna ku di çend rojên derbasbûyî de li devera Erebakincî a Ehwazê de çê bûn, li gel bûyerên vê dawiyê ên bajarê Sinê bi hevrîşal zanîn û got: "Ew sitem û ferq û cudahiya ku tê birêvebirin, wek hev in û di hemen dem de pîlanên ku bo tepeserkirina wan daxwazan tên bikaranîn wek hev in".

Hicrî di doma axavtina xwe de got: "Wan gelek caran ew partî û saziyên ku li Kurdistan, Ehwaz, Belûçistan û deverên din de çalakiyan dikin, bi jinavçûyî nav birine, lê ew pirsgirêk û guherînên ku derdikevin holê, wan cure bangeşeyan ret dikin".

Navbirî di dirêjiyê de got: "Ew zulmên ku li derheq netewên Îranê di heyamê nîv sedsala derbasbûyî heya niha dihatin kirin, berbirûyê dijkiryara xelkê bûye... Heya ku xelk li jêr sitem û ferq û cudahiyan de bin dê li dijî Komara Îslamî bixebitin".

Navirî got: "Ger Komara Îslamî bikare mafê netewan dabîn bike, tu kes dest bo çekê nabe.

Hicrî li ser vê yekê pêdagir bû ku "Di hikûmetên ku derfet bo diyalog û pêragihîştin bi rêçareyên aştîxwazane tune be, xelik dest bo çekan dibin... di rastî de xelk digihîjin qonaxekê ku rêçareyekê xincî vê şîweyê li pêş xwe nabînin".

Birêz Hicrî di hemen dem de piştrast kir ku Partiya Demkrat a Kurdistana Îranê weke yek ji Partiyên sereke ên Kurdistanê, xebata sivîl bo gihîştin bi xwastikên neteweyan di navxwe û derveyî welat dimeşîne û niha jî carê şîweya çekdarî negirtiye ber xwe.

**Parag Khanna:**

## Pêwîste dewleta kurdî û ya Felestînî bê avakirin

Parag Khanna, serokê sentera lêkolînên stratejîk (New America Foundation) di hevpeyvêneke xwe de digel rojnameya tages anzeiger ya swîsrî ku di 16ê nîsanê de hatiye weşandin, gelek bi berfirehî behsa bûyerên vê dawiyê yên Rojhilata navîn dike û serhildanên welatên erebî dinirxîne û bo pêkhatina aşitiyê û çareseriya Pirsgirêkên Rojhilata Navîn dibêje:




- Yek ji wan hokarên ku wisa kiriye Ewropa pêşbikeve, ewe ku her neteweyekê dewleta xwe heye û bi vê yekê pirsgirêkên cografî û siyasî çareserkirine.

Piştî şerê cîhaniyê duyem welatên ewropî nêzîkî hev bûn û sînor di navbera wan de xav bûn û di encam de Yekêtiya Ewropa damezrandin. Li Rojhilata Navîn jî pêwîste du dewlet a Felestînê û dewleta Kurda bên avakirin daku herêm aram bibe û hemû pirsgirêk bên çareser kirin.

**rojevakurd**

## Tirkiye di rêza 112'an de ye!

Rêxistina Çavdêriya Maf û Azadiyên Mirovan Freedom House (Mala Azadiyan) ku navenda wê li DYA'yê ye, rewşa azadiya çapemeniyê ya li seranserê cîhanê nirxand û di raporekê de eşkere kir. Li gor wê, Tirkiye di mijara azadiya çapemeniyê de yek ji wan welatên e ku berbipaş diçe.

Li gor wê, 196 welat ji rewşa herî baş (0) heya rewşa herî xerab (100) bi reqeman hatine diyarkirin.

Tirkiye ji nav 196 welatan bi puana 54' an ketiye rêza 112' an û li gor welatên Ewropayê jî di rêza herî dawî de ye.

Ji 196 welatên ku di raporê de cî girtine 68 welat (ji %35) wek "azad" hatine senifandin, 65 welat (ji %33) mîna "nîv azad" û 63 welat jî (ji %32) mîna "ne azad" hatine senifandin.

Di rapora Freedom House'ê de Fînlandiya, Norveç, Swêd, Belçîka, Îzlanda, Luksemburg, Andorra, Danîmarka, Swîssre û Liechtenstein di rêza herî pêş de û Koreya Bakur, Turkmenistan, Ozbekistan, Lîbya, Erître, Burma, Belarus, Kuba, Îran û Gîneya Ekvatorê jî di rêza herî dawî ya rapora li ser çapemeniya azad de cî digirin.



www.arsivakurd.org

# Dema gur berdibin canê hev û din



Ebdulla Hicab

Dema gur birsî dibin û tu derfet li ber wan namîne, goştê hevûdin dixwin. Ev rewş îrorojê ji karbidestên Komara Îslamî re hatiye pêş. Bi salan piştî ku Ehmedînijad çavgirtî ferman û biryarên Alî Xameneyî birêve dibirin, xuya ye ku ew demeke gotin û kiryaran wan her duyan zêde hevûdin nagre. Di gel ku şûngeh û rewşa Ehmedînijad ne di wê astê de ye ku bi Xameneyî re bikeve rikeberiyê û li hember biryarên wî raweste, lê ewa heyameke ku Ehmedînijad li hin waran ve berevajiyê hez û xwesteka Xameneyî dicive.

Bi rûkeş, nakokî li ser stuxwariya Ehmedînijad li ber Isfendiyar Rehîm Meşayî û pêdagiriya wî li ser hêştina Meşayî di postên giringe nêz deselata birêveberiyê de ye. Meşayî bi hin kesên xwedî bandore nêz Xamaneyî di kabîneya Ehmedînijad de weke Heyder Muslihî wezîrê Îstixbaratê re hevbîr nîne. Ev her wisan zêde girêdayî biryar û dîtinên melayên girêdayî bi sîstema Wilayetê Feqîh re jî nîne û ramana wî li ser sîstema siyasî ji ya piraniay melayan cuda ye. Li gor Meşayî û hevbîrên wî, ku bandorek zêde li ser Ehmedînijad hene, vegera Îmamê Zeman ku ola Şîe bawerî pê heye, wê ne bi riya melayan û muctehidan be, lê wê bi riya têkiliya rasteraste karbidestên asta serve bi Îmam Zeman re be. Di wê çarçoveyê de baweriya wan ewe ku Ehmedînijad an her kesê din ku serokê hukûmetê be, pitir ji mela û mizgevtan dikare rê ji bo hatina Îmam Zeman weke. Ew ekol (mekteb) her wisan giringiyê dide nasyonalîzma fars û bîrokeya Îslama Îranî dide pêş ku bi awayek eşkere dikeve hember Îslama Erebî û ramana piraniaya Ayetullahên ku xwe ji civaka Şîe re bi mercey dizanin.

Li ser kar avêtina Heyder Muslihî encama wê netifaqiyê bû. Red kirina biryara Ehmedînijad li ser ji kar avêtina Muslihî ji aliyê Xameneyî ve derxist ku Ehmedînijad beriya wê biryarê, hatibû şiyar kirin, lê guh nedabû wê şiyar kirinê. Pêştir dema di bin zexta Xameneyî de, Ehmedînijad neçar mabû ku Isfendiyar Rehîm Meşayî ji karê ku ku jê re hatibû diyar kirin bavêje, wî bi manovrek siyasî, Meşayî derbasî postek din ya giring kir. Yanî rewşek wisan anî pêş ku Xameneyî xiste himberanî karê kirî û anî ser wê baweriyê ku biryara wî bipejirîne. Xameneyî ew serpêçî da xatirê wî, karê wî erê kir û rê da ku Meşayî her li nêzîk Ehmedînijad bimîne. Di pêvajoya nakokî li ser Muslihî de jî, Ehmedînijad xwest bi wî awayî tevbigere. Lê Xameneyî ev zêdegavî nepejirand û biryara Ehmedînijad red kir.

Serokkomarê bê deselat, dema şimaqa rêber li bin guhan ket, sil bû û xwe avête goşeya malê. Hêviya wî ew bû ku Xameneyî guneh bi hale wî were û dildariyan bide ber dilê wî, lê wê carê Xameneyî ew kar nekir. Xuya bû ku edî Xameneyî hatiye ser wê baweriyê ku eger bi awayek eşkere û li ber çavê civakê pêşiya Ehmedînijad û hevbîrên wî negre, wê rewş aloz be û ciyê wî di sîstemê de bileqe. Ew rewş bi ramana Wilayetê Feqîh re hev nagre ku deselata bê merc û bê sînûre siyasî, leşkerî, olî, civakî û abûrî tenê dide rêberê olî. Hemû post û karên dine desleatê bi tenê birêve birina ferman û biryarên rêberê olî ne.

Lê mijar ne tenê nakokî li ser çend kesan an hin biryarên yek an çend dezgehên birêveberiya welat e, mijara bingehîn şêveya birêvebirina sîstemê ye. Şaş neyê fam kirin, nakokî li ser şêveya birêvebirina sîstemê jî ne bi manaya nakokî li ser cewherê sîstemê bi xwe ye. Anî dema ku Emedînijad, Meşayî u hevbîrên wan hinekê serbizêviyê dikin, ew serbizêviya ji serhildana ku îro bi navê "Tevgera Kesk" tê nas kîrn re, di cewherê xwe de pir cuda ye. Heta rewş bi çi awayî naşubhe rewşa ku tê de Xumeynî sala 1981 Benî Sedr ji serokkomariyê avêt. Nakokiya îro li ser wê hindê ye ka gelo bîrokratên oldare weke Meşayî û Ehmedînijad wê bi kar û ked û helwêstên tûj zêdetir ji Îmam Zeman nêzîk bin, têkiliya raste rast bi wî re danên û wî dawetî ser erdê bikin, an wê pêwîstiya wan bi navbeynkaran re hebe. Ayetullahên tundreve binajo tu bîrokrat û çi kesî di wê astê de nabînin ku bikaribin bêy navbeynkariya mercey Teqlîd û di dawiyê de bêy alîkariya Weliyê Feqîh bi Îmam Zeman re bikevin têkiliyê. Her du firaksoynan bawerî bi Welî Feqîh hene, tenê cudahiya wan ewe ku bîrokratên oldar, Welî Feqîhekê dixwazin ku tenê serokatiya menewî ya bîrokratan bike û destê xwe nehavêje karê bi kiryar, yên din Welî Feqîhekê dixwazin ku biryarderê karê piratîk be jî. Ji wê bi der her du firaksyon bi yek awayî û di yek astê de li dijî azadî, demokrasî û civakek vekirî ne.

Nîşaneyên wisan hene ku serhildana nakokiya nû di navbera bîrokratan û melayan de, wê carê wê bi serketina ayetullahên ji firaksyona herî binajo bigehe encamê, lê ev encam wê ne qonaxa dawî ya nakokiyan be. Ehmedînijad wê dubare bê neçar kirin ku karê xwe bidomîne û heya dema ku dubare "pê xwe li guhê xwe nexe", wê her serokkomar be. Lê di wan du salên ku ji serokkomariya wî mane de, silbûna niha wê aciziya wî ya dawiyê nebe. Ji ber ku sînûrê deselata wî her hinde ku bi başî bikare weke qeşmerek li ber destê rêberê olî xwe bihlavê. Dema xwest ji wê role derkeve, wê bikeve ber xezebê.

Pilana Meşayî u hin hevbîrên wî ew bû ku piştî Ehmedînijad, deselatek serbazî bi riya serleşkerên Pasdar û Besîc ava bikin, rêberê olî ji xwe re bikin pişt û penah û bi wî awayî modela Îslama Îranî bi ser bixin ku wê têkhilkêşek be ji nasyonalîzma Fars û ola Şîe. Bi pilanek weha re wê Îran weke zilhêzek herêmî, ol û hêza leşkerî ji bo pêşvebirina rola xwe di heremê de bi kar bîne û pitir bi welatên Erebî û Turk re bikeve riqabetê. Di hember wan de melayên deselatdar rengê îraniye Îslamê kêm dikin û dixwazin heman bingehên deselatê ji bo pêşve birina îdeolojiya xwe li hemû heremê û cîhanê bi kar bînin. Ji bo wan giringe ku di hemû postên giringe desleatê de nûnerê Welî Feqîh ku melayek girêdayî rêberê olî ye xwedî deselata birêverberiyê be. Ji bo wan giringe ku kontrola hemû hêzên leşkerî, navendên olî û îdeolojîk û hêzên îstixbaratê bi tenê di destê rêberê olî de be. Di wê çarçoveyê de bû ku ayetullahan, Elî Xameneyî anîn ser wê rayê ku biryara Ehmedînijad di derbarê wezîrê Îstixbaratê de hilweşîne û dubare wî di posta wî de bihêlin.

Encama bigir-bikêşa niha di navbera Xameneyî u Ehmedînijad de, wê weke starta pêvajoya diyarî kirina serokkomarê wê bêye Komara Îslamî be jî. Eger Ehmedînijad di wê pêvajoyê de pitir bişkê, wê şansê hevbîrên wî ji bo serokkomariyê biqede. Ne dûre ku melayeke weke Muslihî, Ehmed Xatemî an kesekê ku ew diyarî dikin xwe ji seokkomariya pêşerojê re amade bike. Lê eger Ehmedînijad bikaribe li ser lingê xwe rawest û bi melayan re pêşbaziyê bike, ne dûre ku yekî weke wî bi rabirdûya Besîcî an Pasdar bibe serokkomar.

Her çavan be, Komara Îslamî, bi wan alozî u rikeberiyan re nakeve pêvajoya guhertinê. Ji firaksyonên dijber kîjan bi ser bikeve, wê rêjîm di cewherê xwe de heman sîstema kevnepereste, mirovkuje dîktator be. Gur dema goştê hevûdin dixwin jî lê her gurin û cewherê wan naguhere.

Ne Ehmedînijad bi derçûn ji biryar û fermanên Xameneyî, ji daxwazî û îradeya civakê nêzîk dibe, Ne Xameneyî bi avêtina Ehmedînijad dergehê xêr û xweşiyê bi ser civakê de vedike. Êdî çi Ehmedînijad ji biryar û dîtinê xwe gavan paşve bavêje û bikeve ber efûya Xameneyî, çi ew ser hişkiyê bike û hin zêde Xameneyî ji xwe aciz bike heya wê dema ku Xameneyî bigre guhê wî û wî li ser kar bavêje, rewşa Komara Îslamî ji ber wan nakokiyan guhertin bi ser de nayê. Sîstema Wilayetê Feqîh bi xwe çavkaniya zulmê û gemara bîr û hizr e. Heya wê roja ku sîstem ji bingeha xwe ve neyê guhertin, bi hin îdiayan an bi hin serbizêviyên yek an çend mohreyên deselatê li hemberî hev, tu guhertin çê nabin.



www.ersiwa.kurd.org

# Serkuta Erebên Ehwazê, cehdek ji bo tirsandina gelên Îranê



Dara Natiq

Îran welatekî pir netewe ye û her yek ji netewên pêkhênere vî welatî anku gelên Kurd, Fars, Turkmen, Azerî, Belûç û Ereb bi awayek giştî li ser axa xwe akincî ne. Lê mixabin bi hegera zalbûna hikûmetên dijî gelî û totalîter di pêvajoya dîroka hevçerx a Îranê de, ev netewane ji tev mafên siyasî, abûrî û çandî yên xwe hatine bêpar kirin û berdewam bi awayên cur bi cur ji aliyê sîstema zal ve hatine tepeserkirin û hewla jinavbirina wan hatiye dayîn. Piştî ji navbirina rejîma Pehlewî û bitalanbirina deskevtên şoreşê ji aliyê melayan û hatne serkara rejîmek hişk û tundajo, tevgera neteweyî-demokratîk a netewên Îranê tevî qonaxek bitirs û dijwar re berengar bû. Lewma netenê demokrasî cihgîr nebû, belkû kesên demokrasîxwaz jî ketin ber şîpelên tepeserkirin û tund û tûjiyê ve.

Siyaseta asimîlekirin û ji navbirina gelên bindest ên Îranê û guhertina demografiya wan herêmane û paktawa regezî û tepeserkirina bizavên azadîxwaz û... yek ji sitratêjî û kompiloyên biyome rejîma kevneparêz a Komara Îslamî a Îranê ye ku bi avayek hovane û bidûr ji yasa û pirensîpên navneteweyî her li yekem roja bidestve girtina deshilatê, birêve dibe.

Gelê Ereb li parêzgeha Ehwazê, yek ji wan netewan e ku bi dirêjahiya zêdetir ji sê dehikan ji deshilatdariya rejîma dîktatoa a Komara Îslamî a Îranê, bi avayek sîstematîk û dûr ji yasa û rêsayên mirovî, ji aliyê navendên tepeserkar ên rejîmê ve tên çevsandin û cehda asimîlekirina şûnasa wan tê dayîn. Rejîm bi pêkanîna rews û zirûfek hovane û emniyetî-polîsî kirina bajarên Ehwazê, tim caran bi hêcetên bê bingeh gelê azadîxwaz û mafxwaze herêma han ji xwe re kirye armanc û bi kuştin, destbiserkirina xurtên Ehwazê, xwastiyê ku hevara mafxwazaneya wan mat bike û bo ji navbirina tevgera demokrasîxwazaneya vê herêmê, ji tu cehd û kiryarek nemirovane xwe neparastiye. Paqijkirina etnîkî, piştguh xistina vê herêmê di warê abûrî û avidankirin û daxistin û pêkşikandina navendên sivîl, avakirina dam û dezgehên vekolînê, girtin, kuştin û îdam kirina rojnamevan û xebatkarên sivîl, fîlterkirin û daxistina tev malperên ser bi saziyên Erebî ên Ehwazê, qutkirina hêla telefon û av û îliktirîka hin deverên vê herêmê û..., ji pêvajoya wan siyasetên dijî mirovîne ku Komara Îslamî di heyamê wan çend salan de, berdewam di parêzgeha Ehwazê de birêwe birye.

Bêşik serbarê tev cehdên nezoke rejîmê bo ji navbirina îradeya mafxwazane û bêdeng kirina tevgera demokrasîxwazane a gelê Ereb, xelk û xurtên Ereb yên Ehwazê bo dirkandina nerazîtiya xwe ji hember siyasetên mirovkujane yên rejîmê, ji her delîve û fersendek ku ji wan re hatibe pêş meşyane ser şeqaman û berpeça siyasetên qirêje Komara Îslamî dane. Her di doma liv û bizavên nerazîbûna vê herêmê de û di demekê de ku herêma Ehwazê di rews û zirûfek dijwar de derbas dibû, bi berçav girtina tirsa mirin û haja bûn ji vê çendê ku renge hejmarek zaf ji wan bihên kuştin, xelk û xurtên mafxwaz yên Ereb berwara 15'ê Avrîla sala 2005 a Zayînî, carek din bo dirkandina nerazîbûna xwe ji siyasetên dijî mirovî yên rejîmê, hatne ser xiyevanan û ji meşek aştîxwazane û hêminane de, daxwaza wîst û xwastên berheqe xwe kirin, lê rejîma milhor û dîktator li cihê guh girtin ji daxwazên berheqe xelkê, bi gule û kuştin û eşkence û destbiserkirinê bersiva daxwazên xelkê da ku bû sedema kuştin û birîndarbûna hejmarek berçav ji xwenîşanderan.

Ji aliyekî din ve destpêkirina şîpelên azadî û demokrasiyê li herêmê û guhartinên cîhana Ereb û ji navçûna sîstemên dîktator û yek li dîv yek ên welatên Erebî di Rojhelata Navîn de, bandorek bingehîn li ser îradeya gelê mafxwaz û zulim jêkirye Erebê Ehwazê daniye. Serbarê tundajoyî û tepeserkirin û givaşên rejîmê bo ser herêmên Ereb akincî yên Îranê, di nizîkbûna salvegera serhildana xelk û xurtên Ehwazê "15'ê Avrîlê" de, komek ji xebatkarên siyasî û sivîl, xelkê Ehwazê bo meşek aştîxwazane di pêxema şermezarkirina siyasetên tepeserkarane yên rejîmê, gazî kirin.

Mixabin herwek pêştir dihat çavnihêr kirin, navendên tepeserkare rejîmê, vê carê jî bi mifah wergirtin ji her terze alavek tepeserkarane berengarî bizava nerazî a xelkê Ehwazê bûn û di encam de zêdetir ji 12 kesan hatin kuştin û zêdetir ji 30 kes jî birîndar bûn û bi sedan xwenîşander jî hatin destbiser kirin û rapêçî girtîgeh û eşkencgehan hatin kirin. Rejîmê rews û zirûfek bixof û emniyetî di vê herêmê de pêk aniye û ji kes û karên kuştî û birîndaran re ragehandiye ku diviya bêdeng bin û ji dana her terze zaniyariyekê bi ragehandinên derwe xwe biparêzin û çend kes ji ewên ku tevî mediyayên Ereb ziman û... hevpeyvîn kiribûn rapêçî girtîgehan kirye.

Ev kiryara rejîmê bû bi hegera nigeraniya raya giştî û car din saziya Netewên Hevgirtî û bitaybetî saziyên berevankar ji mafên mirov bi tundî tepeserkirina gelê Erebê yên Ehwazê pirotesto kirin û nerazîbûna xwe ji hember binpê kirina mafê mirov di Îranê de dan eyanê.

Komara Îslamî a Îranê, zêdetir ji sê dehikan e ku bêrehmane û dûr ji tev urf û yasayên navneteweyî û bi avayên hovane, li tepeserkirin û kuştina netevên bindest û nemaze tepeserkirina her terze bizavek nerazî û azadîxwaz di Îranê de xwe neparastiye û li ser vê siyaseta han weke sitratêjiyek bernamedarêtî berdewam bûye. Lê ya ku di vir de dixuye ew û ku, serbarê tundrewî û givaşên rejîmê bo ser gelên mafxwaz û bindest yên welatê me û yek ji wan gelê zulimjêkirye Erebê Ehwazê, tevgera azadîxwaz ya wan netewan, ji her derfetekê bo dirkandina wîst û daxwazên berheqe xwe mifah wergirtiye û nerazîbûna xwe ji hember siyasetên çevt û dijî mirovî yên rejîmê daye eyan.



---

Leyla Zana:

# Kêr giha hestî!..



**Avestakurd – Li navçeya Amedê Farqîn, namezeta serbixwe Leyla Zana tevlî mîtinga jibo rawestandina êrîşên siyasî, leşkerî bû û bersiva serokwezîrê Tirkiyê Erdoxan da.**

Zana ji bo Erdoxan got " Xirabkar nebe, tu bixwazî navê xwe bi pîtên zêr di dîrokê de binivîsî, tu bixwazî wek yên din pûç bibî û herî, her tişt di destê te de ye. Tankên xwe, polîsên xwe vekişîne. Ger gelê Kurd wê demê kevirek jî avêt, ez berpirsiyar im. Kêr giha hestî, ne tu ne partiya te ji vî gelî nemestirin!"

Zana di berdewamiya axivtina xwe de got "Kediya gelê Kurd dayî te xilas bû. Li vî welatî ew çend tiştên tarî hene, naxwazin pirsgirêk çareser bibe. Leyla Zana da zanîn: Berî 20 salan çawa bûm, piştî 20 salên din jî hemen baweriyê de me. Her cara ku serê xwe deyinim ser balîf, ciwanên li serê çiyan tên bîra min. Ma ez ji tiştên xwe yên berê min kirîn poşman im?

Na. Jiber ku ev doz dozeke bi rûmet e! Gelê ku jibo azadiya xwe dimeşe, li cem xwedê û li cem gel bi rûmet e!"

Leyla Zana da diyarkirin ku li vî welatî polîs jî, leşkerî dîktatorin û gazî gel kir ku heta pirsgirêk neyê çareserkirin wê li qada bin.

# Hejmarek ji kesên nizîkî Ehmedînijad û Meşayî hatin girtin

**Di dema şevê de hêzên ewlekariyê dest bi girtina 25 kesan ji heval û nêzîkên Meşayî kirin.**

Li gorî nûçeyan hevjîna Dr. Husên Fatimî û xanima A. A ku hilgirê menşûra Kuruş di roja perdehilgirtina ji vê şûnwara dîrokî bû, di nava girtiyan de ne.

Girtina van kesan di demekê de ye ku heyamekî berî niha Ebbas Emîrîfer ji kesên nêzîkî Meşayî bi sedema bilavkirina CD'ya "Zihur nezdîk est" hate detbiserkirinû ji aliyê dadgeha taybetî ya ruhaniyetê ve kete ber lêpirsînê .

Herweha li gorî zanyariyan di van hefteyên borî de nêzîk bi deh malperên ser bi tîma Ehmedînijad hatine fîlterkirin, û hinek ji karmendên wan malperan jî hatine girtin.

Di nav kesên girtî ên nêzîk bi Ehmedînijad de kesên bi navên Ebbas Xefarî û Elîesxerê Sîcanî têne dîtin.

Ew zextên li ser Ehmedînijad û Meşayî piştî vê dest pêkirin ku Ehmedînijad seba piştgiriya Xamineyî ji Muslihî yazde rojan neçû ser kar.

www.avestakurd.org

# Buhara welatên Erebî rû li Sûriyê jî kir



Şehab Xalidî

Ew nearamiyên li heremên Erebî ên Rojhilata Navîn de, wek Buhara welatên Erebî jî basê dikin, niha êdî pêlên wê, xwe gihandine Sûriyê jî. Di encama nearamiyan di vî welatî de, êdî pêpkên vê deshilata 40 salî, ketiye lerzê û tirs û xof xistiye dilê kêmaniya ku bi zorê, bi ser praniyê de deshilatdarê diket. Malbata Esed peyrewê mesebê Şîe, û ser bi firqeya Elewî ne ku bi ser praniya xelkê vî welatî de ku Sunnî ne û ji sedî 75 nifûsa vî welatî pêk tînin, deshilatdariyê dikin.

Efserên payebilind ên ewlekariyê û berpirsyarên nizamî ên Sûriyê ji Elewiyan û nêzîkên malbata Esed in, Beşar Eesedê serkomar, fermanderê giştî ê Erteşê û birayê wî wate Mahir fermandê hêza çar ya ertşê berpirsê berbirûbûna bi nearamiyên Emniyetî re ne. Mahir têkiliyek nêzîk bi fermandeyên Sipaha Pasdarn ya Îranê re heye. Birayê wan ê din di sala 2009'an de, bi nesaxiya şêrpencê canê xwe ji dest da.

Peyrewê mesebê Sunnî di nawendên dewletî û bi taybetî di partiya deshilatdar ya Beis a Sûriyê de piranî ne, lê deshilata rastîn di destê serkomar û hêzên ewlekarî û leşkerî de ye.

Di sala 1922'an de û li gor biryara Civaka Neteweyan hinek ji herêmên Împeratoriya Osmanî di navbera Birîtanya û Feransayê de hate parvekirin, û di encamê de Îraqa niha û Ordon û Felestîn li ber Birîtanya û Sûriye û Lubnan jî ber Firansayê ketin.

Di meha Nîsana sala 1946'an salekê piştî vê ku Sûriyê dijberî Almana Nazî û Japonê şer ragihand, ew welat ji destê dagîrkariya derekî jî rizgar bû û deshilatek Komarî ji xwe re ava kirin. Di vê qonaxa ku ewlekarî di Sûriyê de hebû, bi taybetî di vê demê de ku leşkerên Feransewî li wir de cihgir bûn, gellek ji Elewiyan ji çiya û ji gundan derketin û rû kirine bajaran, heta merceên mezin ên Şîe wek Ayetullah Birucirdî û Ayetullah Hekîm mizgevtên Şîî û civatên xêrxwaziyê li herêmên ku Elewî têde bûn avakirin.

Di meha Novembera sala 1970'an de, Hafiz Esed ku wezareta Sûriyê di destê wî de bû, dewleta xeyrî leşkerî ya vî serdemî li ser kar rakir û deshilat bi destve girt.

Hafiz Esed bilez dest bi qahîmkirina pêkhateya deshilatê kir. Wî di sala 1971'an de jî meclîsek bi navê "Şêvra Gel" ava kir. Dema ku wî bi tewahî deshilat di dest de girt, rolê Elewiyan di deshilatê de jî pirr reng kir.

Di sala 1982'an de Hafiz Esed şoreşa xelkê bajarê Hema'yê bi awayekî herî hovane tepeser kir, ku di encamê de dehan hezar kesî canê xwe ji dest dan. Dema ku di sala 2000'î de Hafiz Esed mir, deshilat kete destê Beşar Esed de.

Kurdên ku niha li ser xaka xwe û li jêr deshilata Beşar Esed de jiyan dikin jî, zêdetir ji akinciyên din ên vî welatî li jêr zulm û zordariyê de jiyan dikin û di vî welatî de bûyerên pirr dilêş û karesatbar bihurandine. Lewra Kurdên Sûriyê jî, ji vê derfetê bona gihîştina bi azadiya tam mifahê werdigrin.

Herçend piştî nemana Hafiz Esed, gellek ji karnasên siyasî ser vê bawerê bûn ku Beşar Esed kesekî zana ye û li Ewrûpayê de xwendina xwe bi dawî aniye, û ew dê siyasetek nerm û li gor mentiqê li hemberî xelkê xwe de bigre pêş, lê em dibînin ew riya bavê xwe yê dîktator bernade û ji bûyerên ku li derdora vê de rû didin, dersê wernagre, lê rast vê siyasetê bi awayê herî tund dimeşîne û deshilatdariyê çavê wî li hember dîtina rastiyan de kor, û guhê wî jî li hember bihîstina rastiyan de kerr kiriye.

Ew dixwaze ku bi vê siyasetê deshilatek heta-hetayî ji xwe re li ser vî xakî ava bike, wate bîrkirinek ku di serê Hîtlêr de jî bû, û dixwast rayşek hezar salî li ser rûyê erdê ava biket, lê berevajî ew xewn û xeyala vî ser negirt, jiberku bingeha deshilatdariya wî li ser nivşperweriyê hatibû avakirin û çavê wî li dagîrkirina xaka welatên din û çewsandina neteweyên din bû.

Niha ew tepeseriya ku Beşar Esed bona bê encam hêştina meşa nerazîbûnê ya xelkê welat girtiye pêş, bê şik di serdemekê de ku îmkana veşartina hovîtiyan tuneye, wê bê encam bimîne, û her niha de em dibînin ku çawan nerazîbûnek berfireh di asta navnetewî de heye.

Piştî wan tepeseriyan sê senatorên Amerîkayî ji Obama daxwaza kirine ku daxwazkarê li ser kar vêdeçûna Beşar Esed bibe, û Sûriyê bixin jêr zextê. Di hemen demê de dewleta Ustralya jî daxwazkarê gemaroyan bûye.

Barak obama serkomarê Amerîkayê jî, li gor biryarekê sê berpirsyarên Sûiyê, Saziya Îtilaata vî welatî û Hêza Quds a Supaha Îranê bi tawana beşdariya di tepeseriya neraziyan di Sûriyê de, xiste rîzbenda gemaroyan de.

Hêza Quds ku tayê derve yê Sipaha Pasdaran e, pêştir jî bi sedema çalakiyên terorîstî ketibû nav rîzbenda tehrîman de.

Herweha sê berpirsyarên payebilind jî bi navên Elî Memluk serokê Saziya Îtilaata Sûriyê, Atif Necîb kurxalê Beşar Esed û serokê pêşin ê îdareya Ewlehiya Siyasî, û Mahir Esed birayê Beşar Esed û fermandeyê hêza çarem ya zirihî, seba vê ku dest di kuştara xelkê Dera'yê de hebûne, ketne nav rîzbenda dorpêçan de.

Hêla navê Beşar Esed nexistine nava vê rîzbendê de, lê berpirsyarên Amerîkayî dibêjin heke her bi vî awayî kuştara xelkê sivîl berdewam bike, ew dê navê Beşar Esed jî bixin nav vê rîzbendê de.

Obama di vê derheqê de got ku "Hikûmeta Sûriyê bi binpêkirina mafê mirovan gefê li ewlekariya netewî, siyaseta derekî û abûriya Amerîkayê dike, û divêt bikeve ber hisara abûrî.

Can Kirî, zêde kir ku xelkê Sûriyê bi qasî xelkê Lîbî, Tunis û Mîsrê hêjayî mafê mirovan û serbestiyê ne û deshilat divêt bersivder be.

li enacama teqeya Hêzên Ewlekariyê bo ser meşvanan li Sûriyê, li roja Înê 22'ê Nîsanê di bajarê Dera'yê de, bi sedan kesî hatin kuştin û birîndarkirin.

Herweha li roja Înê 29'ê Nîsanê de jî li gellek bajarên Sûriyê de, gulle berdane ser meşvanan û di encamê de gellek kes hatin kuştin û birîndarkirin.

Li gorî zanyariyan meşvanan vê carê bi dijî deshilatdarên Îranê diruşm dan. Ew li ser vê bawerê ne ku Îran di tepeseriya meşvanan de hewkariya Beşar Esed dike. Ew hewkariya di navbera Îran û Sûriyê de bo tepeseriya xelkê nerazî nîşaneya tirsa zaf ya her du deshilatên serberedayî û dîktator ji hiloşîna deshilata wan e. Îran bona tepeseriya xelkê sivîl û nerazî ji Hizbullahiyan mifahê werdigre û Sûriye jî ji Sipaha Pasdaran.

Gelo ew her du rejîmên ku ji bo tepeseriya azadîxwazan dest dane hevûdin, wê heya kengê bikarin bê vê siyasetê dirêjiyê bidin deshilata xwe ya lerzok? Gelo kîjan dîktatorî şiyaye bo heyamek dûr û dirêj li ser hestiyên belengazan koşkên mezin û bi zora çekan deshilatek heta-hetayî ji xwe re ava biket?

Bê şik ew rejîmên deshilatxwaz bi başî ji dîrokê tê digihîjin û qedera dîktatorên wek Hîtlêr, Pînoşe, Mîlosiwîc û Sedam li pêş çavê wan e, lê ew naxwazin ku rojekê hiloşîna deshilata xwe bawer bikin, ji ber ku xwe gellek ji wan dîktatoran bihêztir dibînin. Lê bê xeber in ji vê yekê ku êdî bayê azadiyê rabûye û text û bextê dîktatoran vê li ser rûyê edê bi taybetî li Rojhilata Navîn de ramale.



# Şerê li ser deshilata zêdetir berdewam e

Rûken

Ehmedînijad ku dixwaze weha nîşan bide ku heta li hemberî rêber de jî, bersivder nine û dikare bi bê tirs hêlên sor derbaz bike, bo selimandina otorîteya xwe wezîrê Îtilaatê, ew qas xiste jêr zextê de, da ku navbirî neçar bû bi destê xwe nameya li ser kar vêdeçûna xwe wajo bike.

Li gorî zanyariyan Ehmedînijad ne tenê di vî warî de, tevî Xamineyî tu tiştek bas nekiribû, belkû heta navbirî ji biryarek bi vî awayî agehdar jî nekiribû, û navbirî nûçeya li ser kar vêdeçûna wezîrê Îtilaatê li malpera "Îrna" de xwendibû. Hinek ji karnasên siyasî ser vê baweriyê ne ku Ehmedînijad di hewla vê hinê de ye, ku wezareta Îtilaatê hilgire û di cihê vê de "Binyata Îtilat" ava bike, bona vê ku ew binyat wek îdareyekê li jêr deshilata wî bixwe de be, û diyarîkirin yan jî nekirina tu kesekî di vê binyatê de hewcedarê wergirtina dengê baweriyê yê meclîsê nebe.

Di rastî de qebûlkirna li ser kar vêdeçûna Heyder Muslihî ji aliyê Ehmedînijad ve û hilweşandina biryarek weha ji aliyê Xamineyî ve, nîşaneya hebûna kêşeyekê di nav deshilatê de ye, herweha eva yekem car nine ku Ehmedînijad hewla nîşandana hêz û deshilata xwe didet û Xamineyî jî navbirî dide rûniştandin, belkû berî wê jî, derheq li ser kar vêdebirina Mutekî wezîrê karê derve yê Îranê û herweha li ser pirsa diharîkirina Rehîm Meşayî wek alîkarê yekem yê serkomar ji aliyê Ehmedînijad ve, Xamineyî bi awayekî eşkere dijayetiya xwe derbarê pirsek bi vî awayî eşkere kiribû.

Bi baweriya muhafîzekaran, Ehmedînijad bi vê helwesata takekesî û tundrewane ya xwe û bi piştevanîkirina berdewam ji Rehîm Meşayî ku dijberên navbirî di nav deshilatê de, ne kêm in, selimandî ye ku ji rêberê nîzamê peyrewiyê nake û xulamokê navbirî nine, lewra navbirî ji aliyê muhafîzekarên tundrew ve, berdewam rexne lê tên girtin, û roj bi rojê valatiya di navbera rêberê nizamê û Ehmedînijad de berfirehtir dibe.

Helbet em ji bîr nekin, ku Ehmedînijad pêştir jî bi li ser kar vêdebirina " Muhsiniyê Êjêî" wezîrê Îtilaatê yê dewleta xwe û herweha bi li ser kar vêdebirina "Sefar Hirendî" wezîrê çand û geşepêdana Îslamî xwest ku bide selimandin, ku serkomar posta herî bilind ya rêveberiya welat e. Lê dijkiryarên Xamineyî li hemberî helwestên navbirî di qonaxên cur bi cur de, selimand kundijayetîkirina rêber li nizama îdeolojîkiya Îranê de, heke mehal jî nebe, buhayek qurs û giran dixawze.

Wezareta Îtilaatê bi sedema vê ku yek ji wezaretxaneyên herî hestyar ên parêzerê mana rejîmê ye, li jêr çavdêriya rêberê nîzamê de ye, ew esla di vê demê de ku Xumêynî mabû, bi awayê herî baş berçav dihate girtin, û tu kesî ji bilî Xumeynî mafê axavtina li ser vê wezaretxaneyê tunebû,

Lê destêwerdanên Ehmedînijad di nava karûbarên vê wezaretxaneyê de bûne sedema vê ku Xamineyî vê carê bi awayekî fermî û bi nivîsîn, wate bi awayekî rasterast di vê meselê de, destêwerdanê bike û bi Ehmedînijad biselimîne ku heke hêlên sor derbaz bike, cuda ji muhafîzekarên tundrew û cuda ji Sipaha Pasdaran ku li jêr destê wî de ye, wê bi astengiyek pirr micid, wate şexsê wî bixwe re, berbirû be.

www.amerikurd.org

### Efûya navnetewî:
## Divê qesabê Sûriyê bihê dadgehîkirin



**Saziyên mafê mirovan, goriyên xwenîşandanên roja Înê li Sûriyê 62 kes dan zanîn.**

Saziya Mafê Mirov a Lêborîna Navnetewî ragihand ku serkomarê Sûriyê dibe seba riftarên tund û tûj li dijî neraziyan, li hember dadgeha Navnetewî de bersiv bide.

Silîl Şitî, sekreterê Lêborîna Navnetewî di gotûbêjekê de, tevî rojnameya "Bîl M Zontak" a Almanî de got: "Beşar Esed û pêrewên wî gerek bizanibin ku riftarên wan seba destrêjîkirin ji xelkê welatê xwe bê bersiv nabe û civaka navnetewî dê yek bi yek wan bikujan bikşîne hember dadgehek navnetewî".

Navbirî herweha ragihand: "Ez bawerim ku dema vê yekê nemaye ku kesek bikare di bin cezayan de xwe derbas bike. Kesek ku hovane di binpêkirina mafê mirov de dest hebe, êdî nikare xwe ji destê edaletê vedize.

Şêvra Mafê Mirov a Navnetewî, kuştara xelkê Sûriyê ji aliyê hikûmeta Beşar Esed ve bi cinayetek li dijî mirovahiyê, da zanîn û di vî warî de hişdarî da.

**Hêza Quds a Sipaha Pasdaran û 3 rayedarên Sûrî ketin ber tehrîman**

Amerîkayê biryar sitand ku tehrîman li dijî rayedarên Sûriyê û Sipaha Quds a Sipaha Pasdaran a Komara Îslamî a Îranê bi rêve bibe. Wan sê rayedarên Sûrî û Sipaha Quds a Îranê, di kuştina xelkê de dest hene. Li gor



ragehandina Qesra Sipî, Mahir Esed birayê Beşar Esed, fermandehiya navendên tepeserkar ên li ser xelkê bajarê Der'ayê li sitû bûye. Elî Memlok, Serokê Saziya Ewlehî û Atif Necîb, kurmamê Beşar Esed, ji berpirsên bilind ên ewlehiya bajarê Der'ayê ne.

Hêjayî gotinê ye ku Saziya Lêborîna Navnetewî li ser tehrîm li dijî Sûriyê, rêk kevtine. Di qonaxa yekemîn de, tehrîm li dijî teslîhatên Sûriyê û piştre jî tehrîm li dijî hikûmeta wî welatî dê birêve biçin.

**Dirûşm li dijî Komara Îslamî a Îranê hatin dan**

Li gor ragihandinan, roja Înê ku bi "Îna hêrsê" hatibû binavkirin, xwenîşandanên nerazîtiyê li bajarên Demişq, Qamişlî, Amûdê, Dîralroz, Heleb û Edlebê hatin lidarxistin. Hêjayî gotinê ye ku di hin ji wan xwenîşandanan de, dirûşm li dijî Komara Îslamî a Îranê qîrandin. Ew di vê bawerê de ne ku rejîma Îslamî a Tehranê, di kuştina xwenîşanderan de dest heye.

# Rojev

## Guhertina hikûmeta Îranê; ewlewiyeta DYA'ê li Rojhilata Navîn




**W: Arîn**

Çak Firlîş, rayedarê payebilind li Zanîngeha "Harward Kinêdî" li rojnameya Kirîstîşin Sayns Manîtor de babetek li jêr navê "DYA li Rojhilata Navîn": Guhertina hikûmeta Îranê; weşandiye ku bi Farsî li malpera "irandarjahan" de hatiye wergerandin û ji ber balkêşiya wê me bi hewce zanî ku wergerînin ser kurmancî.

Ew li destpêkê de bi vî awayî şirove dike: Rengê vê hindê dide ku serhildanên xelkî li seranserê Rojhilata Navîn hêj navberek zaf bi dawîbûna wê re heye û piştî çend dehsalên cemidî û hişk, niha asoya Rojhilata Navîn li pêş çavê me tê guhertin.

Bileziya liv û bizavên ku li deverê de dest pêkirine, bala cîhanî û zûma li ser Îranê rakiriye. Lê Îranê jî hemû ew sedem û fakterên ku bûne sebebê serhildan û rabûna cîhana Erebî, hene û bigre pitir jî. Geşe û rabûna ciwanên Îranê pêtir e ji hemû welatên deverê û nemaze li Îranê ciwanên xwendewartir, zêde nizîktir bi pêvajoya cîhanîbûnê, civaka cîhanî û tevgerên siyasî hene. Çunku her wekî gelek ciwanên welatên din yên deverê, nifûsa ciwan ya Îranê, ji meseleyên weke nirxa xirab a bêkariyê, nebûna fersendên karî û serkut û tepeserkirina hovane, êş û azaran dikişînin.

Guhertina rejîma Îranê divêt ewlewiyet û pêngava yekemîm li Rojhilata Navîn a îro de be; eve tiştek e ku hemû hevalbendên Amerîka li deverê de dikarin bi awayek yekgirtî li ser de lihev bên. Bi hevre dixwazin ku hikûmeta Îranê jinav biçe. Guhertina li Îranê de dê rewşa siyasî, civakî- aborî û rêkar û stratejiya nîzamî a hemû deverê dê têk û pêk bide. Li rastî de dikare mizgîniya Rojhilata Navîn û deverek nû bide.

Li cihê hêviyên bêbingeh û bêsûd ji bo got û bêjên bi hikûmeta Tehranê (ku dewleta Obama jî serketina wan dûr dibîne) hewceyî hewildan û avêtina pêngavên bilez ji hêla Amerîkayê ve bona ji hev hiloşandina hikûmeta Îranê dike. Helbet hewildanek dualî: Him bi awayê civakî û him jî bi awayek hestpênekirî. Guhertina rejîma Îranê tenê li hundurê welat de îmkan heye, wate li nav xelkê de. Nabe û nahê kirin ku li derve de bên azirandin û haydan, belkî dibe û hewce ye bên têr û dabînkirin, wate hewcehî, îmkanat û rênimayiyên pêwîst bona piştewanîkirina ji wan bên misogerkirin.

**Pêngavên kilîdî ên hiloşandinê**

Obama divêt peyam û gaziyek zelal û eşkere bide xelkê Îranê ku li hember rejîmê de rabin.

Piştewaniya binfiskî û nerasterast ji guhertina rejîmê ku heya niha ji hêla Amerîkayê ve hatiye bikaranîn, hindik e û têr nake. Ragihandina vê piştewaniyê divê bi pilan, piroje û pêşerojek nû û baştir ji Îranê piştî guhertina rejîmê hebe. Ragihandina destpêkirina têkilî û pêwendiyên bi DYA re yek ji wan şêwazên piştewaniyê ye. Ji ber ku bidestxistina azadiyê, bi tirsê ve nemumkin e û renge êdî tu car derfetek baştir nehê pêş.

Rêberîkirina menewî a Amerîkayê, berevajî hikûmeta Îranê ji bo nifşa ciwanên wî welatî pirr girîng e. Ciwanên Îranê weke hikûmeta xwe li dijî Amerîkayê ninin û bi dîtinek erênî û pozetîv ve dinêrine Amerîkayê. Ew bawer û bihêvî ne ku bayê guhertinê dê ber bi wan jî bikewe rê û dê Îranê jî vegire.

Divêt ji bo tehrîmên ku bona pirogramên navikî yên wî welatî li ser de hatine sepandin, rêjeyek zêdetir jî ji hêlek din ve bên encamdayîn û riftarên tepeserkarane yên rejîmê û kiryarên tund û tûj ku ji bo tepeserkirina neyar û dijberan ji xwe nîşan didin, bikewin ber tehrîman. Tehrîmên micid ji bilî rejîmê, renge givaşê bo xelkê Îranê jî bîne. Lê gavên wiha ji bo misoger kirina guhertinê hewce ne.

Guhertina rejîmê renge bi êş û azar be, lê li encam de bi qazanca xelkê Îranê ye.

Divêt ji girûp, rêxistin û aliyên neyar û opozîsyona hikûmeta Îranê re, bi awayek rasterast û li demek guncaw de piştewaniya malî û madî bê dabînkirin îca li her cihekê bin.

Divêt ji xwendekarên Îranî ji riya înternêt û hez û elaqeya wan bi ragihandinên giştî (ku weşandina nûçe û zaniyariyan dibe sedema vereviyan û dûrketina xelkê ji hikûmetê) ve mifah bihê standin. Bo mînak dikarin bi awayek rasterast Îranê ji ''AY Pod'' ên xwerayî û alavên din yên înternêtî tejî bikin.

Çak Firlîş li beşek din ji gotara xwe de dinivîse ku Îran ne Lîbî ye. Mezinî û berfirehiya Îranê û şiyanên tolhildana wê, mifahstandin ji vebijêrkên leşkirî weke ''Hêla dijî firînê'' dijwar dike. Lê dema ku nearamî berfireh û tevalî bibin, îmkana birêvebirina gelek vebijêrkên din jî misoger dibe. Qutkirina kanal û torên peywendiyên hikûmetê yek ji wan e.

**Hewcehî bi rêberiya DYA'ê li Îranê de**

Ger em dem û zemanekê bînin berçav ku hewcehî bi rêveberiya Amerîkayê ji bo xistine berbas a piroje û gelaleya Rojhilata Navîn a nû hebe, ew zeman, îro ye. Amerîka bona karên ku dike, tawanbar nabe. Hin kes dê bibêjin ku Amerîkayê bi qasê hewce dexalet û destêwerdan nekiriye û hinên din jî dê bibêjin ku, na Amerîkayê li maytêkirina xwe de gelek pêşde çûye, wate zêderewî kiriye. Lê Îran qadek e ku rêberiya DYA dikare têde guhertinekê pêk bîne.

Renge kiryarên han ji bo guhertinek jêhat li Îranê de têr nekin, lê aliyê dilsarker ê meseleyê hertim li rûyê din ê diraw e. Çawan mirov dikare bi şirovekirina şikestê( ew jî demekê ku hêj neqewimiye) ji derfet û fersendan mifahê werbigre.



www.arsivakurd.org

# Astengiyên seneta torîzmê li Îranê



Sadiq Vehdanî

Her mirovek pêwîstî bi sefer û geriyanê heye bo cî bi cîkirina hin ji hewcehiyên derûnî, karî, û ... ku ev diyardeya mirovî di cîhana îro de û bi pêşveçûna sîstemên ragihandinê bo rîklam ji bo nasandina cihên cur bi cur ji xelkê re û pêşveçûna sîstema veguhaztin(heml û neql), awayekê nû bi xwe ve girtiye.

Torîzmwek zanistek pisporî di gelek ji zanîngehên cîhanê de tê xwendin. Li gor nêrînên zanista tûrîzm, her kesek bi armancên cur bi cur bo cihekê sefer dike ku seba vê yekê jî gerok an torîzmji awayên cur bi cur pêkhatine wek, tûrîzma siyranî(tefrîhî), dermanî, mesebî, karî, werzişî û ....

Torîzm weke senetek bi vî awayî tê şirovekirin: seferkirina kesekî/ê bo cihekê din ku bibe sedema bidestanîna dahatê bo xelkê modela herî pêtir xwedîdahat ya tûrîzmê, modela tûrîzmên tefrîhî ne ku pirraniya welatên cîhanê li ser vê modelê kar kirine û sermaye danîn e. tûrîzma Tefrîhî li ser bingeha çêjdîtin tê şirovekirin, çêjdîtin ji dîmenan, çêjdîtina diyardeyên dîrokî,û ... Pêka vê şiroveyê tûrîzma Tefrîhî bi du awayan hatiye naskirin: Êkotûrîzm(tûrîzma sirûştî), û tûrîzmên balkêş ên dîrokî. Li gor "Yûnikoyê" Çarçoveya welatê Îranê di warê Êkotorîzmde li pileya 5'mîn a cîhanê ye û di warê balkêşandina dîrokî jî li pileya 10'mîn a cîhanê cih girtiye û li gor hemen Saziya Navnetewî di warê kêşandina tûrîstan bo welatê xwe li çav balkêşên tûrîstî ku di Îranê de hene, li pileya herî dawî de cih girtiye.

Torîzmbi pêkanîna kar, dahatên hotilan, restoranan, dahatên vîza, dahatên veguhastin(heml û neql), wek senetekê mezin û bihêz di cîhanê de hatiye naskirin û gelek ji welatên cîhanê bi seneta tûrîzm, dahatek baş ji vê senetê bidest tînin, bo mînak welatê Kûba piştî şerên sosyalîsmî li başûrê Amerîkayê û sepandina tehrîmên giran ji aliyê Amerîka û çend welatên Ewropayî, karî bi seneta tûrîzmê, xwe ji givaşên abûrî xilas bike, an di sala 2009'an de welatê Turkiyê karî pêtir ji 20 Mîlyard Dolar, dahatê netewî bidest bixe, ewa di demekê de ye ku Îran di hemen sal de kêmtir ji yek Mîlyard Dolar ji seneta torîzmdahatê netewî bidest xistibû.

Hegerên nehatina tûrîstan bo Îranê pirr in, lê em di vir de amaje bi hin ji sedemên balkêşnebûna Îran wek welatek tûrîstî dikin.

Sedemên civakî: Yek ji faktorên tûrîzmê ev e ku tûrîst di welatê yan cihê meqsed de hest bi azadî û serbestiyê bike. Hebûna hicaba bizorê û pirsgirêkên civakî wek Êtiyad û ... û tunebûna aliyên kêm ên azadiyên civakî di Îranê de.

Sedemên siyasî: Rejîma Komara Îslamî a Îranê di cîhanê de weke welat û rejîmek tirorîstî hatiye naskirin û tûrîst nikare li Îranê hest bi tenahiyê bike. Hebûna mînakên cur bi cur ên destbiserkirina tûrîstan û nasandina wan weke casûs û ..., êrîş li ser utobûsa tûrîstên Japonî li parêzgeha Sîstan û Belûçistanê û gelek mînakên din ku tenahiya tûrîstan xistiye ber metirsiyê.



Sedemên birêveberiya seneta tûrîzmê: Ev sedemê pêwendiyek rasterast tevî sedemên siyasî heye. Hin ji cureyên birêveberiya tûrîzmê pêk hatine ji: Birêveberiya veguhaztin(heml û neql), pêkanîna rewşek baş di cihên balkêş ên tûrîstî, birêveberiya rîklam û ....

Ewa di halekê de ye ku Îran pêtirîn amara tesadufên cadeyî di cîhanê de bi miyangîna 27 hezar mirî di salek de, heye. Ewlehiyên cadeyî û veguhaztin jî yek ji faktorên kişandina tûrîstan bo her welatekê ye ku şaşitiya birêveberî a karbidestên rejîmê di vî warî de xuya ye. Bê guman li çarçoveya teng a Komara Îslamî di warên cur bi cur de, rewşekê baş ji bo kişandina tûrîstan bo Îranê nayê pêkanîn. Bo mînak di tûrîzma Werzişî de, Îran tu cihekê baş li cîhanê tune ye. Karwanên werzişî di seranserê dinyayê de li çarçoveya du desteyên jinan û mêran bo beşdarî li festîvalên werzişî de, bi welatek din sefer dikin, lê gelo rewşa welatê Îran bo beşdariya jinan di festîvalên werzişî de baş e? yan gelo saziyên werzişî ên navnetewî, Îranê bi hebûna ewqas neemnî wek mîzban dipejirînin? Herweha bikaranîna îdeolojiya Komara Îslamî li hotêl û cihên balkêş bo tûrîstê bûye sedema vê yekê ku di rastî de tûrîstên hundirî yan derveyî ji wan cihan birevin, wate ger Komara Îslamî tu rolek bo kêşandina tûrîstan neke renge tûrîstên zêdetir hebin, jiberku cihên balkêş ên tûrîstî di koka xwe de şiyana kişandina xelkê bo aliyê xwe ve heye, lê têkilkirina îdeolojiya hikûmetî di cihên tûrîstî, di rastî de seneta tûrîzmê li wir lawaz dike.

# Cinsiyet, zanist û parvekirina desthilatê

N: Sûdê Rad W: Kawe

Mirov bi dirêjahiya çendîn sede ezmûnên cur bi cur, hest bi vê yekê kiriye ku civata mirovî bi rêkxistina sîstemên desthilat û berhemanîna zanistê, gerentî dibe û birêve diçe. Pêwendiyên navbera mirov û "girûpên civakî" û bi taybetî "girûpên cinsî"(jin,mêr), ji aliyê sîstema parvekirina desthilatê ve tê diyarîkirin. Sîstema "berhemanîna zanist" jî hevkarî dike bo têgihîştin bi rastiyên civakê û danîna pîlanên dirust ji bo gihîştina her civakek bi armancên xwe.

Birgir û Lomen pirtûkek bi navê "çarçoveya civaka rastîn" li ser bingeha newekheviya cinsî nivîsandine û nêrîna wan di wê pirtûkê de li ser sê ferziyan hatiye gotin, 1- Zanist ji aliyê girûpên civakî ên bihêz hatiye berhemanîn. 2- Jin di siroşta xwe de kêmhêz e. 3- Di vê rewşê de jin rolek berçav li berhemanîna zanistê de tune ye.

Helbet rewşa civakî ku wan du nivîskaran têde jiyan kirine, li ser nêrîn û hizirîna wan bibandor bûye, di doma vê mijare de pêtir li ser nêrîna wan lêkolîn dikin. Tioriya Birgir û Lomen ji çar îdeyên bingehîn pêk hatine: şiroveya mentiqî a nivîskaran ji civakê, rola zanistê li çarçoveya civakî a cihanê de, pênaseya organîzekirin û rewabûnê.

Civak li nêrîna wan du nivîskaran wusa tê pênasekirin: Civak berhema mirovan e, civak rastiyekê armancdar e û mirov jî yek ji berhemên civîn û kombûnê ye.

Di vê şiroveyê de em piştrast ninin ku mebest ji mirov ku berhemê civînê ye, yan mirovek ku civakê berhem tîne, tenê mêr e yan ku jin jî hatiye berçavgirtin.

Di nêrîna nivîskarên pirtûka han de, naskirin "meirifet" û zanist, her du bihevre rolek girîng li berhemanîn û çêkirina cîhanê de dilîzin.

Nasîn "meirifet": Hemen berhemên ku di jiyana rojane de û ji karên tikrarî ên rojanê bidest tên. Destebendî û urganîzekirina tecribeyên ku ji karên rojane ve çavkanî girtine bi mirov îcaze dide ku derbarê wan karan "Meirifet" bi dest ve bîne. Lê parvekirina neadilane ya karên rojane navbera jin û mêr, "Meirifet" ek newekhev pêk tîne.

Di civaka armancî yan îdeal her kesek dikare karên rojane û rola xwe li civakê bixwe hilbijêre, di civaka han de rewşekê adilane bo gihîştin bi "Meirifet"ê pêk tê. Mexabin li civakên modern de karên pispor li gor "Meirifet" a bidesthatî ji ceribandên xwe tên parvekirin, tecribeyên ku li ber dest hemû kes de ninin. Di rewşekê wusa de kar jî li ser bingeha cinsiyetî tên diyarî û parvekirin, bêparbûna jin ji karên bingehîn û girîng rola wan li desthilatê jî kêmreng dikin û li gor vê rewşê ye ku yasayên civakî û îdarî li jêr bandora taybetmendiyên mêran tên danîn.

Yek ji mînakên vî meseleyî şêweya îdarekirina civakên mesebî ye.

Di civakekê han de qutkirina jin li encamdana rê û resmên olî xuya ye û jin nikare pileyên jorîn ên olê derbas bike, wate danîna yasayên mesebî û parastina sunet jî li stûyê mêr e. Bi tevlîhevbûna hêza siyasî û hêza olî, xincî sîstemeke zalim û dîktatorî tiştek din dernakeve holê. Jiber ku hêza siyasî rewabûna xwe ji îdeayekê piroz werdigire ku piştevaniyê ji vê hêzê dike. Bi vî awayî desthilat li destê girûpek ji xelkê de ye ku dikarin felsefeya îlahiyê bizanin û jêre yasan danên. Tu kes nikare ji wan yasayan pêrewî neke, jiber ku ji aliyê desthilatê ve dê bihên serkutkirin.

Ji aliyek din ve di civakên wiha de jiber vê çendê ku desthilat rewabûna xwe ji xwedê werdigre, pêwendiyên navbera xelk û desthilat jî weke pêwendiyek navbera kur û bav lê tê ku bav desthilatdarek tewaw e.

Di civakek wiha de jî nikare bigihîje desthilata siyasî û nikarin li pêy zanistê bin.

Di rewşek wusa de jin xincî derbaskirina jiyanek rojane li nav malê de tu tiştek din hîn nabe. Zanayên olî ên wan civakan bi giştî mêr in û jin tu car nayê berçavgirtin, yasayên mêran ew in ku: xwedê û yasayên jin jî ew in ku mêr dibêje.

Diyardeya newekheviya cinsî bûye sedema vê çendê ku jin di warê pêşketina zanist û çandê wek hebûnek girêdayî bihên hesibandin.

www.arsivakurd.org

# Her ku diçe rewşa kedkaran dijwartir dibe



Azad Kurdî

Kedkarên Kurd li Rojhilatê Kurdistanê îsal roja 1ê Gulanê di demekê de bibîr anîn ku roj li pey rojê jiyan û rewşa wan dijwartir dibe û pirsgirêkên wan ne tenê çareser nabin, belkî xurttir dibin. Kedkarên Kurd li parêzgehên Rojhilatê Kurdistanê li gor herêmên din yên Îranê xwediyê mafên herî destpêkî yên senfî û mirovî yên jiyanê ne. Pêvajoya paşdehiştina bajarên Rojhilatê Kurdistanê di warê pîşesaziyê de wek berê dom dike û herî kêm budce ji bajarên Kurdan re tê terxankirin. Ger mirov standardên fabrîkeyên herêmên Kurdan li Îranê li gor navçeyên din binirxîne, mirov dikare bêje li Rojhilatê Kurdistanê karxane tune ye.

Piraniya pisporên Kurd li Kurdistanê jî vê yekê piştrast dikin. Bo mînak li fabrîkeyên Tehran, Kereb û Isfehan û bajarên din ên Îranê.... di her karxaneykê de hezaran karker kar dikin, lê li Kurdistanê di binav fabrîkeyan de 100 heta 150 kes dixebitin. Fabrîkeyên herêmên Kurdan zêde kargeh tên hesibandin.
Li Rojhilatê Kurdistanê bêkarî gelek zêde bûye û serhejmariyên ku Komara Îslamî di vê derbarê de belav dike, piranî şaş in, meaşê karkeran dereng tê dan, karker tên derxistin, heqdestê wan tê kêmkirin û ji aliyê din jî giraniya xorak û alevên xwarinê roj li pey rojê zêde dibe û vê yekê pirsgirêkên mezin ji bo karkeran pêk aniye.
Hemû xebat û çalakiyên senfî yên karkeran li Rojhilatê Kurdistanê wek hemû çalakiyên sivîl û civakî din ên tex û qatên civaka Kurdistanê bi çavek ewleyî tên temaşekirin û xebatkarên yekîtî û sendîkayên kedkaran di bin zextên herî xurt de ne û pir car tên girtin, şîkence û cezayên giran ên girtîgehê jî bi ser wan tê sepandin. Zext û givaşên siyasî û ewleyî niha heta li ser karkerên Kurd jî ku doza mafên xwe dikin tên meşandin. Ji ber vê rewşê niha rêxistin û saziyên senfî yên karkeran li Kurdistanê tune ye, ji ber ku nirxa çalakiyên senfî yên kedkaran jî pirr zêde bûye. Rayedarên Komara Îslamî rê nadin karkerên Kurd saziyên senfî ji xwe re pêk bînin da ku doza mafên senfî yên karkeran bikin.

Yek ji lêgerên herî berçav di van salên dawiyê de ku rûbirûyê karkerên Kurd li Rojhilatê Kurdistanê û sernaserî Îranê hat, kirîza aborî û encamên dorpêçên aborî yên navnetewî li ser Komara Îslamî ya Îranê ye. Li bajarên Rojhilatê Kurdistanê ew kargehên kêm û biçûk jî ku bi hewla gel bi xwe hatine avakirin, rastî vê kirîzê hatine, lewra piraniya wan ji ber pirsgirêkên aborî hatine daxistin. Ji ber vê rewşê hezaran karker betal û bêkar bûne. Piraniya xwediyên kargehan neçar dibin, kedkaran derxin û barê giran ê jiyanê ji wan re çend qat zêde bikin.

Xuya ye ji ber vê rewşa nebaş û bêkariya berfireh li Kurdistanê, welatî neçar dimînin ku ji rêya kasibkarî û dan û standina alevan li deverên ser sînoran debara jiyana xwe bikin.
Beşek din ji karkerên Kurd li Rojhilatê Kurdistanê bi rêya cotkarî û ajeldariyê debara jiyanê dikin û çavkaniya jiyana wan ji vê rêyê tê dabînkirin. Mixabin di van salên dawî de ku hişkesalî li Kurdistanê hebû, xesar û ziyanên mezin li cotkaran ket û jiyana wan a aborî bi lêgerên cidî re berbirû kir.

Beşeke berçav ya kedkarên bajarên Rojhilatê Kurdistanê jî ew keç û jin in ku şev û roj di kargeh û malan de mafûran dirêsînin û rewşa karkirina wan gelek nexweş û heta trajedîk e. Piraniya jinan di hundirê malan de tewnên mafûran dirêsînin û piraniya wan rastî nexweşiyên fîzîkî, çavêşî, piştêşî û pirsgirêkên bêhntengî û gelek nexweşiyên din tên. Mixabin heqdesteke herî kêm ji keç û jinên mafûrrês re tê dan û çi standareke karkirinê di vî warî de nay berçavgirtin.

Ji ber bêkariya zêde li Kurdistanê û pirsgirêkên aborî, gelek diyarde û fenomenên civakî jî li Kurdistanê di van salên derbasbûyî de serî hildane û her diçe xurttir dibin. Bandora nigatîv a van diyardeyên civakî di nav gelek malbatên Kurd de bi eşkere tê xuyakirin. Telaq û berdan zêde bûye, bengdarî bi madeyên hişber her diçe zêdetir dibe û pirsgirêkên derûnî û pîkolojîk jî berfireh bûne. Ji aliyekî din jî rêjeya girtiyan li Kurdistanê zêde dibe.

Jiyana kasibkariyê û dan û standina alevan ji welatên Îraq û Turkiyê çavkaniyeke din a kedkarên Kurd tê hesibandin. Ligel vî halî û vê rewşa dijwar a karkeran ku me qala wê kir, rojane em dibînin ku çend kasibkarên Kurd li ser sînorên navbera Rojhilatê Kurdistanê bi Bakur û Başûrê Kurdistanê re ji aliyê hêz û çekdarên Komara Îslamî ve tên kuştin û birîndarkirin. Gelo tawana karker û kasibkarên Kurd ku neçar dimînin rêya herî dijwar ya dabînkirina aboriya jiyanê hilbijêrin û hemû metirsî û tehlîkeyan bi nirxa canê xwe bikarin heta pariyek nan peyda bikin û rêya kasibkariya ser sînor bigrin pêşiya xwe, ew e ku were kuştin û birîndarkirin? Gelo ma ne pêwîst e ku rayedarên Komara Îslamî dawî li dorpêşên aborî bo nawçeyên paşdehiştî wek Kurdistan, Belûçistan û Xozistanê bînin û guhertinên bingehîn di shêweya parvekirina budceya welat, xurt kirina bingeha edaleta civakî, reformên civakî, abûrî u guhertina rêveberên herêmî de pêk bînin?

Ger kar û pîşe li Kurdistanê hebe, bêguman kes ne amade dibe ku rêya dijwar ya kasibkariyê bigre ber xwe û jiyana xwe bixe xeterê ji bo dabînkirina aboriya jiyanê. Lê mixabin ji ber valahiyên ku me li jor behsa wan kir, ew rewşa trajedîk li Rojhilatê Kurdistanê li ser kasibkar û karkeran her dom dike. Her eva ku welatî neçar dimînin rêyeke bi xeter wek kasibkariya ser sînor bikin, nîşan dide ku rewşa aborî ya xelkê li herêmên Kurdan li Rojhilatê Kurdistanê çiqas xerab e. Tenê ev faktera berçav têr dike ku mirov êdî çi li ser rewşê nenivîsîne.



## Kirêgirtiyên Komara Îslamî madeyên hişber li bajarê Mehabadê belav dikin




Kurdistanmedia: li meydana Cam a bajarê Mehabadê ji aliyê hejmarek ji caş û kirêgirtiyên rejîma Komara Îslamî ve madeyên hişber weke: çendîn curên heb, şerbetên cur bi cur, tiryak û ... di nav xelkê de tên belavkirin.
Ev karê kirêgirtiyên rejîmê bi mebesta gîrûdebûna ciwanên Kurd bi van madeyên malwêranker ku rojane weke siyasetek ji aliyê rejîmê ve di Kurdistanê de tê pêrewkirin.
Hêjayî gotinê ye ev karê rejîmê tolhildan ji ciwanên Kurdistana Îranê ye ku hertim li hember serberedayiya hêzên Komara Îslamî de berxwe dane.

## %12.1 girtiyên jin li girtîgehên Îranê de tûşî Îdzê bûne



Gorî ragihandina berpirsa kar û barên pizişkî ên Saziya Girtîgehan, nêzîkî 7 hezar û 500 girtîyên jin di Îranê de hene ku %12.1 ji wan tûşî nexweşiya Îdzê bûne. Herweha %76 a wan jî xwedî mêr in.

Navbirî daye zanîn ku %57 ji gişt girtiyan tûşî bengdarî û îtiyadê bûne. Hêjayî gotinê ye ku girtî li girtîgehên Komara Îslamî tûşî her terze nesaxî, îtiyad, îdz û gelek tiştên din dibin û li cihê wê ku wan perwerde bikin û piştî bi dawîhatina hukimên wan bi saxlemî radestî civakê bikin, mixabin weke beşek ji siyaseta komara Îslamî madeyên bêhişker bi eşkere di nav wan de bilav dikin û rê ji bo gelek diyardeyên xirab û nesaxlem xweş dikin û li dema dawîhatina hukmê wan de kesek nesax û bengdar radestî malbat û civakê dikin.

www.arsiva-kurd.org

# Jiyan û biserhata hunermend Bêmal Bêmdad,

## naskirî bi Bêmal Rajanî

beşa dawî



Mecîd Cinîkanlo

**Lawik:**

Lawik awayek ji strangotinê ye ku li navbera du evîndaran de tê gotin û parekî herî mezin li muzîka Kurdî pêk tîne.

Bêmal li gotina lawikan de jî, şarezayiyekî tam hebûye. bi liberçavgirtina wan kasêtên navhatî ku piştî mirina wî bi cih mane, navbirî li gotina wan stranan ku li ser evîn û evîndaran hatne gotin, şarezayiyekî bê mînak hebûye û li refa wan hunermenda de ye ku li serdemê xwe de xwediyê zortrîn guhdaran bûne.

Ew lawikên ku ji aliyê Bêmal ve hatine gotin, wek hemû lawikên Kurdî li ser evîna zaf ya gencê Kurd hatine gotin ku hin caran bûye sebebê gorîbûna her dû evîndaran û yan cangorîtya evîndaran ji bo gihîştin bi armancê.

Li nêrîna lawikên evîndarî ên Bêmal de, mirin bi wateya jinavçûna yekcarî nine, belkî destpêka jiyanekî din e. Bi wateyek din cangorîtî li rêya evînekî bi emeg, nirxekî rastiye bo evîndarên rastiyê û gihîştin bi jiyana heta hetayî, ku li evînekî wusa de ye ku mirovahî xuya dike û berhemê xwe dideû ew evîn dibe evîna tucar nemir.

Bi zimanekî din Bêmal li stranên xwe yê evîndariyê de tekezê li ser paqjî û emegdarîya evîndaran dike ku li rêya evînê de, bi bawer bin û bi wî awayî mesaja xwe digehîne guhê evîndaran.

ji navdartirîn stranên evîndariyê ku ji aliyê Bêmal we hatine xwandn em dikarin îşarê bi: xatûn cane, zenbîlfiroş, xecê û siyamend, heso u nazê u memu zîn bikin.

pîre payîzok:

Pîrepayîzok awayekî herî xembar ya awazên kurdî ye ku ji aliyê hunermendên kurd ve, li çaxê mirina na bê wext ya xortekî, yan mirina rêber yan serdarekê bi dengekî xweş û tejî ji hestên xemgînî dihête xwandin û dibe sebebê giryana beşdaran û guhdaran.

li kasêtên bi cih mayî ji hunermend Bêmal û awayê awazên kurdî têne dîtn ku li nava xelkê bi temen û yan ew kesên ku ezîzekî xwe ji dest dane zor alîgir hene.

Hizra huneriya Bêmal

Her hunermendek li jiyana hunerîya xwe de bi mifahwergirtin û evîna hunermendekî din, dest bi karê xwe yê hunerî diket û ji ber vê yekê hunermend bi serdem û dewrana xwe ve girêdayî ye û li ser her bûyerekê nêrîna taybetî ya xwe heye û hunera xwe li serdemê wisa de dafrîne û bi mirovê zemanê xwe bersivê dide.

Hizra hunerî ya hunermend Bêmal zêdetr li hunermendên mezin yên kurd wek: şakroacî Ewdilkerîm û kawîs axa nêzîk e.

Bêmal hertim wek ewan cehd kirîye ku stranên netewî û lawikên evîndarî li wêjeya hunerîya xwe de, bi mifahwergirtin li peyvên resen yên kurdî û parastina exlaq û nasnameya hunerî û naxê hunera resen ya kurdîû xwandina stranên hunerî cih bide û li heman çaxî de ziman û têgehîştina xelkê wî serdemî bi başî naskirî ye û ji ber vê yekê li awazên xwedê de hertim bi zimanekî kurdan e û sade stran gotine.

Bêmal bi peyrewîkirina ji hunermendên wek şakiro, Hacî Ewdilkerîm û kawîs axa lapereyekî zêrîn li hunera kurdên seranserî kurdistanê û bi taybetî herêma urmiyê de afirand.

Dengê Bêmal li nava xelkê kurdistanê de hunermend Bêmal li heyamê jiyana xwe ya hunerî û hetanî roja ku koça dawiyê kir, nêzîk bi 20 kasêtên curbicur tomar kirin, ku sed heyf û mixabin parek ji wan kasêtan seba kêmtirxemiya me, îro rojê bi kêmî peyda dibin. Dengê dilxoşker yê Bêmalê hunermend her zû karî ku sînorên urmiyê derbas bike û li çaxê jiyana wî de li bakûrê kurdistanê û başûrê kurdistanêû radyoyên rewan û urmiye û kirmaşanê stranên navbrî bilav dikirin.



Gulnaz hevjîna Bêmal

Bi derbasbûna zeman û pêşveçûna teknelojiyê, îro rojê li seranserî kurdistanê parek ji kasêtên dengê wî peyda dibin. lê sed heyf û mixabin parek ji wan kasêtan ku îro rojê wek sermayekî netewî têne hesêbandin li halê jinavçûnê ne û erkê li ser milên hemû xelkê kurd û bi taybetî xelkê herêma urmiyê ye ku kom kirina wan kasêtan, wan ji metersiya jinavçûnê biparêzin li ber vê yekê ku ew kasêt ji blî wê hindê ku sermaya netewa me ne, ji aliyeke din berhemê xebat û zehmeta hunermendekî mezin yê kurd e ku hemû jiyana xwe pêşkêşî gel û neteweya xwe kirî ye û li jiyana tejî li derd û kulên xwe de bi hestekî kurdane bo neteweya xwe xebat kirî ye.



Lewra bi wê hêviyê ku xortên neteweya me û bi taybet li herêma urmiyê de, bi komkirina wan kasêtan û her tiştek ku li ser jiyana kesên wek Bêmal hene, rêz û emegdarîya xwe bo xebat û têkoşana wî nîşan bidin.

Bê şik û guman Bêmal yek ji hunermendên herî navdar yê herêma urmiyêû kurdistanê ye ku wek zor ji hunermendên wê herêmê xebatek netewî ji bo parastina parek ji dîrok û çanda netewa kurd li wê herêmê meşandî yeû hemû hewla wî parastina ziman û çanda netewa kurd bûye û gelê me bi çavekî qedr û qîmet mêzeyî xebat û têkoşana hunerî ya Bêmal diket.

**Zarok çavnihêrê hatina bab!**

Bêmalê hunermend nêzîkî 23 salan tevî hevjîna xwe "golnaz"ê li gundê Rajanê jiyan kir û mixabin li zistana sala 1365'an, Golnazê Bêmal bi tenê hêşt û koça dawî kir û li goristana gundê Rajanê bi axê hat teslîmkirin. bi mirina Golnaza evîna Bêmal, jiyana Bêmal pir zehmet bû û ji bilî erkê babniyê, navhatî erkê cihê wala yê daykiniyê jî pir kir, da ku zarokên wî hest bi nebûna cihê wala yê dayka xwe nekin. Bêmal li heyamê piştî mirina Golnaza xêzana xwe bi evînekî taybetî zarokên xwe li hembêz girtin û li rêya xizmet bi zarokên xwe de, ji çi fidakarîyekê xwe neparast.

Lê dûrketina xêzana wî ya emegdar zor nekêşa û li nîwa manga sala 1366'an a rojî, di çaxekê de ku li gel hejmarek ji xelkê gundê Rajanê bo peydakirina risqê rojane yê zarokên xwe çûbû Kurdistana Turkiyê, li çaxê vegeryanê ji gundê "şkevtan"a Kurdistana Turkiyê, li nêzîk gundê "cêrmê"û li cihekê bi navê "zînya tabota" seba hatina renyê li hevalên xwe diveqete û paş çend demjimêran li temenê 51 saliyê de canê xwe ji dest dide.

Piştî çend rojan bi xebat û zehmeta xelkê Rajanê, termê bê canê Bêmal li nav befrê de peyda dikin û li rêkewta 20'ê Sermaweza sala 1366'an li goristana gundê Rajanê li tenişt havjîna vê "Golnaz"ê bi axê hate teslîmkirin û bi vî awayî paş çend mangan li mirina Golnazê, Bêmalê evîndarê wê, ew bi tenê nehêşt û çû cem aramgeha wê ya ebedî..

Bi mirina hunermend Bêmal, xelkê Kurdistanê yek ji mezintirîn hunermendên xwe yên wê herêmê û zarokên wî jî babekî dilsoz ji dest dan.

Mirina Bêmal eger çi karesatekî bi xem bo hemû xelkê herêmê bû ‹lê dengê wî yê tejî ji evîn û welatperweriyê û xizmeta wî bi tore û wêjeya Kurdî tucar namre û navê wî dê li lapereyên zêrîn yên hunermendê Kurdistanê û bi xasmanî herêma urmiyê bihête nivîsandin.

Bi mirina Bêmal û bi derbasbûna zeman, tenê yadgarê wî, wate kurê wî bi navê Hisên, Ku hunermendekî deng xweşe, li rêya babê xwe de dirêjiyê dide xizmet bi çand û toreya Kurdî û dengê wî wek yadgarek ji Bêmal re, wek mîrat bo wî bi cih maye.

www.arsivakurd.org

# Pêkanîna zimanê standard, erkê kê/î ye


Ceifer Mubeşirniya

Zimanê kurdî yek ji zimanên herî kevinar ên cîhanê tê hejmar, lê heya niha jî ev ziman bi çendîn devokan tê axaftin û nivîsandin û tu carî nebûye zimanek yekgirtî bi navê zimanê Kurdî. Sedemên pêknehatina zimanê yekgirtî yê Kurdî gelek in, renge ya herî girîn ji wan sedeman jî nebûna dewleta Kurdî be. Tevî nebûna dewleta Kurdî, bindestî, perçe perçebûna gel û axa Kurdistanê, herwusa tevî hemû bela û tirajîdiyên ku di dirêjahiya dîrokê de hatine serê gelê me, girîngiya parastina zimanê Kurdî û pêwîstiya pêkanîna zimanek yekgirtî yê Kurdî, ji hemû demekê girîngtir e.

Weke tev aliyek ji civaka Kurdistanê agehdar in, zimanê Kurdî tevî cur bi curiya devokên cuda û zaf, di eynî demê de pêk tê ji du devokên sereke, Kurmanciya Jorîn û Kurmanciya Jêrîn. Helbet pirr caran bas ji devoka kelhurî jî tê kirin ku devokek sereke a Kurdî ye, lê ewa ku di ragihandin û perwerdehiya niha ên Kurdî de kar pê tê kirin, devokên Kurmancî û Soranî ne û devoka kelhurî ser bi Soranî tê hesibandin.

Tevî cur bi curiyên devokên zimanê Kurdî jî, di rastî de li wan çend salên dawî de zimanê Kurdî pêşkevtinek baş bi xwe ve dîtiye, lê pêşkevtina zimanê Kurdî û xizmetên ku bi vî zimanî hatine kirin, di çarçoveya devokên cuda wate Kurmancî û Soranî de hatin kirin.

Ji aliyek din ve jî xizmetên ku bi pêşketina zimanê Kurdî hatine kirin, bi awayek zimanevanî a akadîmîk ji bo çêkirina zimanek hevbeş nebûye, belku pêtir di nava hestên netewî bi taybetî ji aliyê saziyên siyasî-netewî ên Kurdî ve ji bo parastina ziman û gelê xwe bûne. Jiber ku axa Kurdistanê bi ser çar welatan de hatiye parvekirin, hevrabûna wan dewletan li ser perçe perçekirina gelê Kurd û hin pirsên din ên siyasî di nava wan desthialtan de, derfeta jihevhatina saziyên Kurdî ji bo pêkanîn yan tekoşîn ji bo zimanek yekgirtî yê Kurdî tune bûye.

Di gotinek din a mentiqîtir de, siroştî ye ku niha û berê jî partiyên siyasî pêkanîna zimanek hevbeş yê Kurdî bi erkê sereke yê xwe hene. Mirov dikare bi wî awayî bas ji mezintirîn pirsgirêka navbera wan de bike. Di nava gelê Kurd de edîb, zimanzan û helbestvanên mezin û bihêz hene, lê parek berçav ji wan di çarçoveya devoka taybet bi xwe, nivîsandiye û diaxive, şareza û bi nav û deng in û xizmeta pêşxistina beşek ji zimanê Kurdî kirine. Lewma ez bawer im ji bo ku her yek ji wan ji asta nav û dengê xwe danekeve, divêt bi nêrînek vekirîtir û di pêxema pêkanîna zimanek standard û hevpar yê Kurdî ku çavkanîgirtî ji tev devokên Kurdî be, tê bikoşin û xebatek nevestane di vê derheqê de bimeşînin.

Di vir de gerek bihê gotin ku dema erkek netewî kete ser milên mirov, pêwîst e ku xwe ji hin berjewendiyên şexsî ên weke nav û den û maneve di pileya yekimîn de, biparêze. Eva jî hasila zulma dirêjdem a netewî ye ku dujminan tu car îzin nedaye ku em bi zimanê xwe




nezanîbin û nezanin, yan bi awayek din bihê gotin, ku karê han bi erkê edîb, nivîskar, zimanzan û helbestvanên gelê Kurd bizanin. Bê guman zanayên warê ziman û wêjeya Kurdî jî wî erkî li ser milên xwe wêde nabin û nikarin jî xwe ji wî erkî xwedî dernexin.

Lê ji bo pêkanîna zimanek hevbeş û çavkanîgirtî ji hemû devokên Kurdî, xêncî nebûna dewleta Kurdî, pirsgirêke siyasî-netewî a gelê me li çarparçeyên Kurdistanê ku ziman û wêjeya Kurdî derbasî pirsek siyasî dike, di nava zimanzan û edîbên Kuran de jî pirsgirêk û nerêniyên ji hev cuda şa bibin û serkevtinan bidest bixin, lewma di vî warî de, zana û edîbên me jî heya qasekî di pêvajoya pêkanîna zimanek hevbeş û sitandard yê Kurdî de xemsar bûne.

Li gor vê yekê, pêvajoya pêkhatina zimanê yekgirtî yê Kurdî, di qonaxek dijwar de ye. Pêwîst e ku erkdarên vî karê netewî ji vê yekê xafil nebin ku zimanê gelê Kurd nasname û zaminê parastina wî gelî ye, lewma dujminan ji bo tunekirina gelê Kurd, hertim di qonaxa yekimîn de zimanê Kurdî kiriye armanc ku ew zulm heya niha jî li perçeyên bindest ên Kurdistana Turkiyê, Îran û Sûriyê de bi awayek xurt li ser gelê me dimeşe.

# Roja azadiya Çapemeniyê, 151 rojnamevan di hepsê de




Li gor rapora Enîstîtoya Navnetewî, 22 rojnamevan di 4 mehên destpêka sala Zayînî de hatine kuştin, herweha du nûçegihan di bajarê Mesrate yê Lîbiyê de di şerê navbera hikûmeta Lîbî û dijberan de bûne gorî.

Nûçegihanên bêsînor bi boneya 3'ê meha Gulanê roja cîhanî ya belavokan, di raporekê de ragihand ku niha 151 rojnamevan, 9 hevkarên ragihandinan û 128 cudabîr di girtîgehan de ne.

Li gor vê çavkaniyê, Kmara Îslamî a Îranê di sala 2011'an de, bi hebûna 28 Milyon û 200 Hezar bikarînerên Entirnêtê, bi dujminê Entirnêtê hatiye naskirin û her wa dirêjî bi tepeseriya ragihandinan dide û çendîn wêblagnivîs bi îdamê mehkûm kirine.

Ji bûyerên girîng ên serkevtina rojnamevanên Îranî li jê givaşên Komara Îslamî de, mirov dikare amaje bi xelata cîhanî ya azadiya belavokan a sala 2011'an bi Ehmed Zêdabadî, rojnamevanê xweser yê girtî bike, ku xelata han li hember givaşên li ser vî û berxwedaniya rojnamevanê navbirî, herweha xebat ji bo azadî, mafê mirov û demokrasiyê bi wî hat dayîn.

Mînaka girîng a givaş û hovîtiya Komara Îslamî li hember rojnamevanan jî bi awayek sombilîk, xwekujiya Siyamek Pûrzend bas bike. Navbirî ku heya nizîk ji mirinê dixistin bin givaş û îşkenceyan û di karnameya rojnamevaniyê di dîroka Komara Îslamî de dê bihê sebtkirin.

## HEMÛ DIÇIN...


Sefye Xalidî

Hemû diçin kes halê min
napirse
Dilê min ji reşatiyê ditirse
Kes nabêje keçê jiyan çi hal e
Ji destê we dilê bêkes dinale
Çav bi rê me ez hemû roj
û gavan
Çi Çax dê bê ew xewrevînê
şevan
Min derxîne nev
behra hêstiran ya sar
Tu kes nine! xeyrî axîn û
hewar
Hinek hatin! gutin gelek baş û
şirînî
Çima diçî! demek bal min
namînî
Hemû dikin gel min yariyê
xwe, felek
Ez êxsîrê xemên jinê me
gelek!
Bawiriya min ji dunyayê
şikandin
Şûna xweşiyan xem dilê
min hebandin
Ez ji şer im, ciqlê
çavên dujminan
Dil ronî me ez jî wek
hemû jinan
Hinek caran dikin roja min
tarî!
Bav û birên min dibên tu gêj
û harî
Ey felek, ey xayîn dunyayê
bibîne
Çima qismet vê ji serê min
tîne
Min qencî kir, çi hate riya min
Xayînî her karê wan e, ne
yê min
Revîm! Li ber çavên we ez
namînim
Nekin zorî, hêvîdar im
hêstirên we bibînim

www.arsivakurd.org

# Agirî

Duheftînameyek siyasî, civakî, çandî û hunerî ye
Ku Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê diweşîne

www.kurdistanmedia.com/kurdi
Navenda bingehîn ya xebata Agirî li Kurdistanê ye.
Navnîşana derveyî welat:
AFKB.P. 102- 75623 ParisCEDEX 13 –FRANCE
E - Mail: agiri2003@hotmail.com
agiri2003@gmail.com, rojnamaagiri@gmail.com





www.arsivakurd.org

## xelkê Îranê tu cihek di nava xelkê şad ên cîhanê de ninin




**Damezrawa "Galup" (meztirîn damezrawa wergirtina serjimêriyan di astê cîhanê de) serjimêriyek bilav kiriye ku li gorî vê, xelkê Danmarkê bi wergitina nimreya 72, xelkê herî şad ê cîhanê ne.**

Her salê hinek serjimêrî ji aliyê damezrawên wergirtina serjimêriyan û Saziya Tendirustiya Cîhanî ve derbarê radeya keyfxweşî û xemokiya li welatên cîhanê de, ew jî li ser bingeha faktorên wek radeya beşdariya xelkê di çalakiyên werzişî û herweha radeya hezkirina ji çalakiyên şuxlî û karên dilxwaz, tên bilavkirin û nimereya 1 heya 10 bi van welatên cîhanê tê dan.
Di vê serjimêriyê de Kanada û Siwîd bi nimreya 69 bi hevra li rîza duyemîn de cih girtin, û Ustraliya di rîza sêyemîn û Fenland û Vênzoila jî li rîza çar û pênc de cih girtin.
Di nava welatên vê herêmê de jî Îmaratên Hevgirtî ên Erebî li rîza şazdehemîn û Qeter jî li rîza hejdê de cih girt. Xelkê welatê Çad li Afrîqayê jî wek xelkê herî xemok li daviyê rîzbendê de cih girtine.
Lê navê Îran, Qezaqistan, Sûriye û Sudanê bi sedema nebûna serjimêriyek rast di rîzbendê de cih negirtiye.

## Paşekevta erzî ya 100 milyard dolarî a Ehmedînijad vala derket



**Serokê komîsyona "Telfîq"ê ya meclîsa Îranê ragihand ku li gor serjimêriya fermî ya Banka Nawendî, heya sala 89'an heta yek dolar jî paşekevta erzî tunebûye,**

Ehmedînijad di civînek mezin ya nizama bankî de gotibû: " dibêjin ku paşekevta erzî ya Îranê 100 mîlyard dolar e, ku helbet ji vê hindê jî zêdetir e, û divêt ew paşkevt ji aliyê bankan ve bihête çalakkirin".
Li gorî zanyariyan, di dema behskirina li ser budceya sala 90'an, behsa paşkevta erzî çê bû, ku serokê komîsyona cotkariyê di pêşniyarekê de, daxwaza 2 hezar mîlyard tumanî ji hisaba paşekevta erzî bo avê kiribû, ku nûnerên meclîsê ew dawxaz ret kiribûn.

Paşekevta erzî, paşekevta netewî bo rojên tangaviyê û piştevanê abûriya welat e.

## Ji mozexaneya Kazimînî dizî hat kirin



**Du ji alavên pirr buha ên mozexaneya Kazimînî hatin dizîn.**

Li gor nûçeya Yezdi Ferda, qifla deriyê mozexaneya Kazimînî hatiye şikandin û amanek şûşeyî a çend tewen a demê Mad, bi nirxa 800 Hezar Dolar û amanek Nemrûdî bi nirxa 1 Milyon Dolar hatiye dizîn. Gelo mozexaneyek ew qas pirr buha bi vî awayî tê parastin? Nizîk 2 Milyon Dolar di demek kin de li mozexaneya Kazimînî namîne.
Mozexaneya ku nobedarên hertim, kamîreyên veşartî û alavên dizgir hene, 2 ji etîqeyên pirr buha jê tên dizîn. Çi gerantî tê kirin ku etîqe û pereyên pirr buhatir ji vê mozexanê û mozexaneyên din bi vî awayî nehên dizîn.

## Nan giran bû, lê Şîşe û Kirak erzan!




**Serokê Yekîtiya Nanê Fantzî yê Tehranê, ragihand ku nirxa Nanê Fantzî ji sedî 25 giran bû.**

Cewad Keremî serokê Yekîtiya Nanê Fantzî yê Tehranê, herweha got ku nanê Bagt ji 400 tumenî gihîşte 500 tumenî, nanê Sandwîcî ji 200 tumenî gihîşte 250 tumenî, nanê Hembergir ji 200 tumenî gihîşte 250 tumenî, û nanê Berberî yê Fantizî bi 500 tumenî tête firotin.
Lê li hemberî giranbûna nirxa nan, nirxa Şîşe û Kirakê zêde bûye.
Li gorî nûçeyan, di salan 88 de, kîloyek Şîşe 90 û kîloyek Kirak 140 milyonî bû, lê niha Şîşe 7 û Kirak 11 milyoîn tê firotin.

## Ehmedînijad:
## Di Îranê de tu kes birsî nine!!



**Dewlet di hewla vê yekê de ye ku zêdetir ji du milyon û pêncsed derfetên kar di sala nû de pêk bîne.**

Ehmedînijad serkomarê Îranê di rê û resma rêzgirtina ji kedkarên nimûne di Îranê de, ragihand ku dewlet di hewla vê yekê de ye ku zêdetir ji du milyon û pêncsed derfetên kar di sala nû de pêk bîne.
Navbirî herweha tevî îşarekirina bi serjimêriya derfetên kar ku di sala 89'an de pêk hatin got, di sala rabihurî de pitir ji yek milyon û 600 hezar derfetên kar pêk hatine.
Navbirî herweha tevî îşarekirina bi yasaya armancdarkirina yaraneyan got ku îro em dikarin bêjin di vê Îrana mezin û berfireh de heta yek kesê birsî jî nahê dîtin.
Ehmedînijad herweha got di van pêncî salên rabihurî de ji sedî 70, ew diravê ku di navbera hemwelatiyan de dihate parvekirin, tenê di destê ji sedî 30 kesî de bû, û niha pêde divêt heya pêncî salî, ew dirav wekhev bi ser xelkê de bihê parvekirin.
Navbirî herweha got ku nabe tu kes di avahiyên 40, 50, yan 60 metrî de jiyanê bike, belkû divêt hemû kesî di Îranê de

## Bikaranîna çarşîwê li gişt zanîngehên Qumê de bû biryar

**Îsal bikaranîna çarşîwê li zanîngehên Qumê de, di defterçeya konkora seraserî de wê bê nivîsandin**

Li gorî nûçeyan, fermandê Hêza Întizamiya Qomê, tevî îşarekirina bi hewcehiya bikaranîna çarşîwê di zanîngehên Qumê de ku bi biryara Civata Ferhenga Giştî ya Qomê bûye, ragehandiye ku evsal bikaranîna çarşekê li zanîngehên Qumê de, di defterçeya konkora seraserî de wê bête



nivîsandin.
Fermandê HêzaÎntizamî ya Qomê herweha rewş û etmosfera şoreşê wek sebebkarê parastin û şandina derve ya şoreşê binav kiriye û gotiye: "Gişt dilsojên nîzamê bawerin ku heke em bixwazin şoreşa Îslamî berdewam biket, me tu riyek ji bilî giringîdana bi buha û nirxên îslamî tuneye, lewra hêza întizamî ji tewaya hêz û şiyana xwe bona parastina nîzama Komara Îslamî tuneye.